10
بازرگانییەکی ترسناک لە کوردستان

## گورچیلەیەک بە ٢٠ هەزار یۆرۆ دەگۆڕدرێت

2
لە "گۆڕەپانی یاسەمین" لە هۆڵەندا

## بەشار ئەسەد دەکوترێ



Diyarek diçe, 2 Diyarên din tên

▶13


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

**Deutschland 1,50 Euro** | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

**Hejmar / Nr. 96 | 19 Gulan / Mai 2011**


**Hilbijartin nêzik, pevçûnên arteşa Tirk û gerîllayên PKK'ê zêdetir, tansiyon jî bilind dibe**



Wêne:v DIHA. Şirnex: 17.05.2011, pevçûnên dema binaxkirina cenazeyê gerîllayê PKK'ê

# Tirkiye şerê navxweyî diceribîne







2 / 4 / 11 / 14 »

**Opozisyona Sûriyê:**

Ragehandina Şamê hevdîtinek ligel Serokê Komîteya Derva ya Parlemena Almanyayê pêk anî. ▶2

**Mele Kirêkar:**

“Elî Bapîr nikare ji destê Îranê derkeve, Yekgirtû jî pêşengtiya oldarên Kurd nake... “ ▶5

**Bazirganiya gurçikan:**

Li Hewlêrê grûbek bijîjkan bi bazarek qirêj re mijûl e. Rûdaw awayê xebata wan eşkere dike. ▶10



4 191631 701506 00020




9 771869 104000 20

Great Britain

Malpera nû ya Rûdawê vebû

Rûdaw.eu

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

# Ragehandina Şamê hevdîtinek li Parlemena Almanyayê pêk anî

Nûnerên danezana Ragihandina Şamê ji Serokê Komîteya Derva ya Parlemena Almanya xwestin ku navê Beşar Esad jî bikin lîsteya kesên ku li hemberê wan ceza hatiye birîn.



**Rûdaw -** Roja Pêncşema borî (12'ê Gulanê 2011) çar nûnerên "Ragehandina Şamê li Derve" hevdîtinek ligel Serokê Komîteya Têkiliyên Derve yê Parlemana Alman pêkanîn. Li gor agahiyan, naveroka hevdîtinê bûyerên dawî yên Sûriyê bû.

Li gor agahiyên ku bi dest Rûdawê ketine, di civînê de sê kes amade bûn: Enes El Ebdeh (Serokê Ragehandina Şamê li derveyî welêt), Eblehed Estîfo (Endamê Ragehandina Şamê û berpirsê Rêxistina Asûrî ya Demoqrat) û Maksîm Îsa (Nûnerê Partiya Yekîtiya Demokrata Kurd li Sûriyê di Ragehandina Şamê de). Giraniya axaftinan li ser rewşa Sûriyê a vê dawiyê û kuştarên rêjîma Sûriyê bûn, ku li hemberî xwepêşanderê aştiyane tên pêk anîn. Herweha li ser kuştin, girtin û terorkirina gelê Sûriyê ji aliyê alavên ewlekariyê yên rêjîma Sûriyê jî hat axaftin.

Nûnerên Ragehandina Şamê daxwaz kirin ku Yekîtiya Ewrûpa û Almanya navê Beşar El Esad jî bikin wê lîsteya kesên ku berî çend rojan ceza li hemberî wan derketibû. Nûneran di civînê de bala parlementerê Alman kişandin ser wê yekê ku rûdanên li Sûriyê ne mumkin e bêyî erêkirin û bê biryarekê ji aliyê Serokkomar pêk werin. Nûnerên Ragehandina Şamê herwiha daxwaz kirin ku Almanya û Yekîtiya Ewrûpayê kar bikin ji bo ku li Dadgeha Navnetewî a Tawanan li Den Haagê doz li hemberî Sûriyê bê vekirin û hemû kesên berpirs bên dadgehkirin.

**Nûneran daxwaz kirin ku li Dadgeha Navnetewî ya Tewanan li Den Haagê, li hemberê berpirsên Sûriyê doz bê vekirin.**



Ruprecht Polenz

### Ragehandina Şamê çi ye?




Ragehandina Şamê ya Guhertina Niştimaniya Demokrat, navê danezanekê (belgeyekê) ye ku di sala 2005'ê de ji aliyê hejmarek dezgeh, rêxistin û kesayetiyan ve li Şamê hate îmzekirin. Destpêkê van aliyan ragehandin îmze kir: Kombûna Niştîmanî ya Demokrat li Sûriyê, Hevbendiya Demokrata Kurd li Sûriyê, Komîteyên Vejandina Civata Şaristanî, Eniya Demokrata Kurd li Sûriyê, Partiya Pêşeroj, Komîteya Sûrî ya Mafê Mirov û hejmarek kesayetiyên serbixwe. Piştî demeke kin Koma Ixwanên Misilmanên Sûriyê ji Londonê piştgiriya xwe ji Ragehandina Şamê re nîşan dan.




## Ahmet Turk bo Rûdawê: Dewletê hemû rêyên aştiyane girtiye

# "Ne sebra min, ne jî baweriya min ma"

**Cesûr Cenk** Mêrdîn



Ahmet Turk êdî bawer nake ku AKP çareseriyê bîne

Hevserokê BDP`ê yê berê û namzedê serbixwe yê Mêrdînê Ahmet Turk di hevpeyvîneke taybet de bo Rûdawê rewşa dawî ya Kurdistan û Tirkiyê nirxand û got, "Baweriya min nemaye ku dewlet pirsgirêka Kurd bi rêyên aştiyane careser bike." Turk ragihand ku Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyip Erdogan her dem dîktatorên cîhana Ereb rexne dike û got, "Lê zextên ku ew dîktator li ser gelê xwe nakin, Erdogan li Kurdan dike."

Siyasetmedarê Kurd Ahmet Turk da zanîn ku pakêta AKP`ê ya bi navê vebûna demokratîk pakêtek vala derket û got siyaseta AKP`ê ya derbarê Kurdan xapandin e. Turk, hevdîtinên li Girava Îmraliyê yên bi Serokê PKK`ê Abdullah Ocalan re tên kirin jî wek manevra û helwestên dem derbasbûnê binav kir û wiha axivî: "Kurd di wê baweriyê de ne ku Dewlet beriya hilbijartinê dixwaze reaksiyonên Kurdan nerm bike, demê pê derbas bike û bi wan re hêviyek çê bike. Bi Ocalan re li Îmraliyê diaxivin. Lê gel li benda encamên hevdîtinê jî disekine. Lê ti tiştek dernakeve. Di şûna gavên demokratîk û niyêtên baş de li bajaran hevalên me tên girtin û li çiyayan li dijî gerîllayên bê çalak operasyonên dijwar tên kirin. Ev jî hem baweriya min, hem baweriya gel şikand."

Ahmet Turk qet ne bawer e ku niyeta AKP`ê û ya dewletê hebe ku di demeke nêzîk de pirsgirêka Kurd di parlamentoyê de çareser bikin. Derbarê çalakiyên neguhdariya sivîl û rolê parlamentoyê de Turk wiha axivî. "Ji aliyekî ve ji Kurdan re dibêjin dev ji çekan berdin û li aliyê din jî tehemûlê ti çalakiyekî gel a demokratîk nakin. Wê pirsgirêk çawa bê çareserkirin? Em niha dixwazin herin parlamentoyê, ji ber ku em wê derê wek cihê çareseriyê dibînin, ne ku em dixwazin herin û rûnên. Lê eger hûn pêşî li hemû rêyên demokratîk bigirin, hûn ê rol û wateya parlamentoyê jî ji holê rakin."

### "Erdogan dîktatorê herî mezin e"

Derbarê atmosfera hilbijartinê de jî Turk da zanîn ku AKP bi hemû derfetên dewletê li Kurdistanê propagandaya hilbijartinê dimeşîne û ji wan re jî astengiyan derdixe. Turk gotinên Serokwezîrê Tirk Erdogan ên derbarê dîktatorên Ereb jî bibîrxist û got, "Dibêje ku serokê Libyayê, Misrê û Tunûsê dîktator in, zextan li gelê xwe dikin. Lê ew çi dike? Bi sedan rewşenbîrên Kurd û Tirk xistiye zindanê, tenê di meh û nivê dawî de 900 endam û alîgirên partiya me girtin. Ew dîktatorê herî mezin e."

Turk di dawiya axaftina xwe de operasyonên li dijî gel û dijî gerîlla li çiyayan bibîrxist û got "Hemû rêyên demokratîk û aştiyana girtine. Ez bi xwe kesekî zêde aştîxwaz im; min her tim bi hêviyeke mezin li pêşeroja Tirkiyê mêze kiriye û her tim daxwaziya aştî, biratî û demokrasiyê kiriye. Rêyên aştîxwaz ji bo min rêbazên siyasî yên bingehîn in. Lê bi rastî êdî bi min re jî ne ew sebir maye û ne jî bawerî maye ku dewlet û AKP pirsgirêka Kurd çareser bikin. Eger ev sebir bi min re nema be, ka hûn bifikirin hestên xortekî 20 salî niha çawa ne."

**Rûdaw**

Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

Ji bo rûbirûbûnê 500 milyon dînar hatiye veqetandin

# Herêma Kurdistanê xwe ji bo penaberên ji Rojavayê Kurdistanê amade dike

▶Tê çaverêkirin ku rejîma Sûriyê bi helwesta tolhildanê êrîş bibe ser gel û ew jî bibin penaber

▶Herêma Kurdistanê ji ber ku hevsînor e xwe ji bo penaberan re amade dike



**Heta niha hê penaber ji Sûriyê nehatine Herêma Kurdistanê, lê tê texmînkirin ku Kurd û Xirîstiyan bên**

**Hewlêr (Rûdaw) -** Rêveberiya Koç û Koçberan a girêdayî Wezareta Navxwe ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê li parêzgeha Dihokê diyar kir ku ew niha bi amadekariyan ve mijûl in ku karibin pêşwazîkirina bi hezaran penaberên bikin ku dibe di pêşerojek nêzîk de ji tirsa tolhildana rejîma Sûriye ji navçeyên Rojavayê Kurdistanê bên Herêma Kurdistanê,

Ligel lezbûna bûyerên li Sûriye û zêdebûna binpêkirinên li dijî xwepêşanderan, pêla revîna rûniştvanan, bi taybet jî ji navçeyên Rojavayê Sûriyê ber bi xaka Libnan ve, herwiha ji navçeyên başûr ber bi Urdun û ji bakûr jî ber bi Tirkiyê ve bi awayek dramatik ber bi zêdebûnê ve diçe.

Ev pêla penaberbûnê destpêkê ji sinorê parêzgeha Der'a ber bi xaka Urdinê ve dest pê kir. Dawiya heftiya borî, bi taybet jî li sinorê parêzgeha Humis ku bi hêzên leşkerî hatibû dorpêçkirin û ji aliyê leşkeran ve bi awayek dorpêçkirî bombe baran dikirin, bi awayek berçav ber bi bakûrê Libanê ve zêde bûye. Ew jî zêdetir cihê dûdiliyê ye ku hêzên artêşê çavdêriyên hûr xistîn ser navçeyên sinor û tenê jin, zarok û pîr dikarin li wê derê re derbas bibin.

Hikûmeta Tirkiyê ji bakûr ve wekî amadekariyek ji bo pêşwazîkirina li pêla penaberan, bi taybet jî ku ji Qamîşlo, Amûde û Dirbespiyê rûbide, gelek çadir amade kirine. Li Herêma Kurdistanê jî parêzgeha Duhokê ligel navçeyên Rojavayê Kurdistanê hevsinor e, ji bo wê yekê jî dibe ku ligel dijwarbûna pêngava tolhildana rejîma Sûriye pêlek penaber berê xwe bidin Herêma Kurdistanê.

Rêveberê Fermangeha Koç û Koçberan ê Dihokê Mihemed Ebdullah Hemo ji Rûdawê re diyar kir ku ji despêka bûyerên li Sûriye ve, wan amadekariyên xwe kirine û aliyên têkildar ji egerê hatina penaberan agahdar kirine. Hemo got: "Me ligel Komîsyona Bilind a Karûbarên Penaberan a Neteweyên Yekbûyî UNHCR'ê serdana navçeyên ser sînor kir, ji bo bikarin bi awayek baş pêşwaziyê li penaberan bikin. Herwiha me daxwaz ji parêzgeha Dihokê jî kir ku bi awayek lezûbez nîv milyar dînar ji bo amadekirina komgeh û dagirtina kêmasiyan veqetîne." Rêveberê Koç û Koçberên Parêzgeha Dihokê da zanîn ku ew texmîn dikin pêleka penaberan bên, bi taybet jî penaberên Kurd û Xiristiyan. Lê got: "Me heta niha pêşwazî li ti penaberan nekiriye û kes derbazî sinorê me nebûye."

Heftiya borî jî parlementerekî Brîtanî yê Parlementoya Ewrûpa, Struan Stevenson (Girêdayî Grûba Parêzgarên Reformxwaz) ji bo Herêma Kurdistanê bangewaziyek bo lihewarçûnê belav kir. Stevenson bi serokatiya şandek parlementerên Ewrûpa serdana Îraq û Herêma Kurdistanê kir. Wî bi bîr anî ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê di salên borî de bûye stargeha bi hezaran penaberên Ereb û Xiristiyanên navçeyên navîn û başûrê Îraqê û hê jî beşek zêde ji wan penaberan venegeriyane.

# Ji bo diyaloga bi Esad re mercên Kurdan hene

**Hêmin Xoşnaw**

Aliyên siyasî yên rojavayê Kurdistanê ji bangewaziyên rejîma Sûriye yên ji bo diyaloga nîştîmanî bi guman in û dibêjin ku wê tenê tevlî diyalogek giştî bibin, ne li gel rûniştinek cûda.

Wezîrê Ragihandina Sûriye Ednan Mehmûd roja 13`ê Gulanê diyar kir ku ji bo dawî hatina li krîza ku du meh dom dike, hikûmet wê li gel aliyên siyasî dest bi projeyek diyaloga nîştîmanî bike û wê li ser asta her parêzgehê cûda bicivin.

Aliyên Kurd ên siyasî wisa nîşan didin ku ji bo bi destxistina mafê xwe wekî prensîb diyalogê red nakin, lê mercê wan ji bo destpê kirina diyalogê heye. Ji wan jî; divê banga ji bo guftûgoyan pêşkêşî hemû tevgerên Kurd bê kirin û diyalog jî giştî be. Ne wekî ku rejîma Sûriye dibêje, li gel her parêzgehekê cûda dest bê kirin.

Roja 15'ê Gulanê du meh li ser xwepêşandanên Sûriyê re derbas bûn û hê jî rewş ber bi arambûnê ve naçe û li ser asta mirovahiyê jî rewş ber bi aliyek trajedîk ve diçe. Bi taybet jî li gel penaberbûna bi hezaran xêzanan dest bi reva ber bi Libnanê ve kirine. Serokê Ragihandina Şamê Eşref Mîqdat li Awistralya ku çend roj in xwe gihandiye Qahîre, roja yekşemê di hevpeyvînek li gel rojnameya Şerq El-Ewsted de got: "Bi dewle serê bê helwestiya civaka navnetewî, dibe ku em neçar bibin hewara xwe bigihînin xebata çekdarî."

Hevdem Nûnerê Partiya Demokrata Kurd a Sûriyê Mistefa Îbrahîm li Herêma Kurdistanê hişyariya wê yekê da ku rewş ber bi dubarekirina senaryoya Lîbya ve diçe û ev yek bi "Arastyek metirsîdar" bi nav kir.

Tevî ku xwepêşandanên li navçeyên Kurdan ne wekî yên navçeyên din bi xwîn e, lê tirsek zêde heye piştî kontrolkirina rewşê ji aliyê artêşê ve, pêngavek a tolhildanê dest pê bike. Ji ber ku li hewara daxwazên rejîmê neçûne.

**Siyasetmedarekî Kurd: Şaşitiyek kujer e ku Kurd bêyê opozîsyona Sûriye ligel rejîmê guftûgoyan bikin**

Tevgera Kurd a siyasî xwe di hevpeymana 12 partiyên siyasî de dibîne, bi baweriya wan banga rejîma Sûriye ya ji bo diyalogê ji bilî leyîstokek siyasî, ne tiştek din e.

Berpirsê Polîtborûya Partiya Yekitiya Kurd li Sûriye Fûad Elîko demekê endamê parlementoya Sûriye bû û derbarê hewldanên Hikûmeta Sûriye yên ji bo guftûgoyan got: "Dema hikûmet banga diyalogê dike, ne li gel opozîsyona diyar a wekî Ragehandina Şamê û ne jî li tevgera Kurd dirûne. Dibe ku nikare li gel wan rune jî."

Bi baweriya Mistefa Îbrahîm piştî van hemû kuştiyan, banga ji bo diyalogê bê wate ye. Lê ji bo Serokê Partiya Yekitiya Demokratîk (PYD)ê Salih Mihemed Muslîm a girîng çareseriya pirsa Kurd e; "Her hewldanek ji bo pirsa Kurd û eger pir lewaz jî be, hêja ye ku helwest li ser bê wergirtin. Çareseriya vê pirsê li pêş hemû karên partiyên Kurd ên li Sûriye ye."

Hevpeymana 12 partiyên Kurd ên Sûriye di civînek eşkere ya li bajarê Qamîşlo (14'ê Gulanê) bernameya çareseriya pirsa Kurd bo raya giştî ya Sûriye eşkere kirin û mirov dikare di du xalên serekî de bigre dest. Yekemîn; pêwîst e di destûrê de li ser hebûna Kurd mikûr bên. Duyemîn; ji bo çareserkirina pirsa Kurd dîtina çareseriyekê.

Aliyên Kurd tekezê li wê yekê dikin ku li himber pejirandin an nekirina diyalogê de, wê xwedî yek dengî bin. Serokê Partiya Yekitiya Kurd li Sûriyê Fûad Elîko got: "Wezîrê ragihandinê dibêje, wê bi awayek cûda li gel her parêzgehekê diyalogan bikin. Ev nabe diyalog, eger diyalog ji bo çareserkirina pirsa siyasî ya Sûriyê be, pêwîst e hemû Sûriyê bigre nava xwe. Me wekî civata partiyên Kurd ên siyasî biryar girtiye ku pêwîst e diyalog li tevgerê be, ne li gel partî yan jî çend partiyên di nava tevgera siyasî ya Kurd de. Di heman demê de dive deshilat posta kesên ji bo diyalogkirinê diyar bike."

Hevdem Fûad Elîko da zanîn ku şemiya borî şandek a partiyên Kurd gihiştine Şamê, ji bo derbarê daxwazên Kurdan li gel opozîsyona Sûriye biaxivin.

**Bayram Ayaz**

## Kî vî şerî pîj dike û bo çi?



Şerê di navbera polîs û leşkerên Tirk û çekdarên KCK'ê de careka din gur bû. Di du-sê hefteyan de zêdetirî çil kesî hatin kuştin. Piraniya wan Kurd in. Careka din xwîn dirije, axîn û zarîn ji pêş malan tê bihîstîn. Şîn û taziye yek li dû yekê tên danîn.

Şer û xwînrijî, zilm û zordarî êdî bes e! Dayikên Kurdan cilên spî li xwe dikin, çît û şarên spi li serê xwe dipêçin, derdikevin meydanan aşitî dixwazin. Li çalakiyên "rojên şemiya" bi wê tirkî ya xwe "jihevketî" zarezara wan e, "Bariş ha Bariş" diqîrin. "Bariş" nayê, aşitî çênabe! Lê di dewsa vê de zilm zêde dibe, xwîn diherike û meyitên xortan tên.

Bes e! Ev şer û pevçûnên vê dawiyê hemî jî hîle û provakasyon in. Ev xortên delal, cangoriyên me dibin qurbaniyên şerê qirêj. Rol û wezifeyê wan cuda be jî, polis û leşkerên tên kuştin jî zarokên belengazan in. Ew jî di ber vî şerê pîs de heder dibin. Ew jî însan in, dê, bav, zarê wan jî heye. Çawa dilê me bi xortên me dişewite, nava me diperite, agir bi mala wan jî dikeve. Bes e, ev xwîn rijandin. Bes e, şandina meyît û nahşan!

Berpirsiyarê vî şerê qirêj, gunehbarê vê xwînê, qatilê van xortên delal, dewleta Tirk e, Ergenekon e, Hikûmeta AKP'ê ye. Em tew behsa xwînmijên MHP'yiyan nakin, ku bi siyaseta xwînê û bi dijminahiya Kurdan dixwazin ji xwe re dengan berhev bikin. Behsa kemalistên CHP'yî jî nakin, ku tu wan biesirînî tenê nefret û dijayetiya Kurdan ji wan dinisile. Tirkçiyên turanî û kemalist du parçeyên sîstema Ergenekonê ne. Ev bela bi salan e, pêşxistina Demokrasiyê li Tirkiyê û rêlibervekirina çareseriyeke adil ji bo doza Kurd dixitimîne. Nuha jî van provakasyonan Ergenekonî derdixin. Digel ku KCK'ê biryara bêçalakiyê daye û êrîş nake, ordî li çiyayan êrîşê çekdarên KCK'ê dike wan dikuje. Polîs li bajaran êrîşê xelkê sivîl dike. Ev operasyonên ordiyê û polisan di çarçoveya qaşo planên emnî de diqewimin. Ev planên têkdar in. Bi zanatî şer derdixin, Kurdan proveke dikin. Hikûmeta AKP'ê van êrîşan seyr dike. Xuyaye li hesabê wan jî tê. Dijayetiya Kurdan de şopên dewletê, Ergenekonê û AKP'ê têkilhev bûye. Li pişt deriyan AKP'yî dibêjin, "hêza me pê nagihe". Ne rast e. Hinek cudahî di nabera partiyên Tirkan de hebe jî, lê dema mijar dibe doza Kurd, hemû dibin yek. Ka binêrin qet partiyeka Tirkan li dijî van operasyonan derdikeve? Na! Kurd divê vê bizanin, dev navêjin hevdu û yekitî û yekrêziya xwe biparêzin.

Gotina me ya dawî ji KCK û BDP'ê re ye. Leyistik li ortê ye. Divê hûn ji her demî û ji her kesî zêdetir şiyar bin. Kurd divê xwe biparêzin û nebin şirîkê planên Ergenekoniyan jî û yên AKP'ê jî. Kurd divê planên xwe hebin û xwedî li xwe derkevin.

---

### Li gor Alinak li parlamentoyê ti tiştek nayê çareserkirin

# "Şerekî mezin li ber derî ye"



Kevneparlamenterê Kurd, Mahmut Alinak hefta borî di hevpeyvîneke ligel Rûdawê behsa "senaryoyeke reş" kir ku dibe di demeke nêzîk de li Bakurê Kurdistanê û Tirkiyê pêk bê. Alinak hefta borî cara yekem çû Girava Îmraliyê û serdana Serokê PKK`ê Abdullah Ocalan kir. Piştî vegera Îmraliyê, Alinak pirsên Rûdawê bersivand.

**Birêz Alinak hûn berê qet ji bo hevdîtinê çûbûn Girava Îmraliyê?**

Naxêr, ev bû cara yekem e ku ez diçim û cara yekem e ku ez Birêz Ocalan dibînim. Ev jî bu bûyerek nû di jiyana min de....

**Gelo hevdîtina we di atmosfereke çawa de derbas bû?**

Ez li ser înîsiyatifa "Ciwan Nemirin, Mal Wêran Nebin" çûm Girava Îmraliyê. Ez ê li ser rewşa Îmraliyê di demeke nêzîk de gotarek binivsînim. Ez dixwazim vê yekê baş bê zanîn: Li Îmraliyê dewletê hemû qanûn û yasayan daye aliyekî. Hevdîtina me bi Ocalan re tenê saetek dom kir. Lê li gor yasayê parêzer dikarin rojê 24 saetan bi muvekîlên xwe re li girtîgehan hevdîtin çêkin. Vê mafê nadin parêzerên Ocalan. Hemû maf û pêdiviyên wî yên jiyanê û yên mirovahiyê hatine kêmkirin. Ev jî bê huqûqiya herî balkêş e.

**Wek tê zanîn ji mêj ve rayedarên dewletê bi Ocalan re hevdîtin çêdikin û diaxivin. Gelo hûn derbarê van hevdîtinan de axivîn?**

Belê, ew grûb bi Birêz Ocalan re hevdîtinan dom dike. Ew bi xwe ji van hevdîtinan hêvîdar e.

**Baş e, gelo hûn ji van hevdîtinan hêvîdar in?**

Naxêr, ez ew qas baş nabînim û hêviya min zêde tune. Ez qet bawer nakim ku ji van hevdîtinan tiştên ku tên çaverêkirin, derkevin.

**Derbarê 15'ê Hezîranê de pir tên axaftin. Gelo çi wateya wê rojê heye?**

Wateya wê ev e ku şerê navxweyî hatiye devê derî. An wê şerekî berfireh, an jî wê aştiyeke bi wate çêbe. Min vê yekê hê di meha Çileyan de anîbû ziman, lê mixabin nehat fahmkirin. Ez hêvî dikim ku encameke erênî je derkeve. Lê xuya ye ku hevdîtin hê negihîn peymanekê, wê dawiya wan bê. Wê demê tenê ciwan nemirin, mezin jî di nav de, bi hezaran kes wê bimirin. Wê pevçûn di navbera gelan de derkeve, wê êrîşa li ser malan zêde bibe, wê avahiyên dewletê û navendên medyayê yên agahiyê bên bombekirin. Wê mirovên di girtîgehan de bên kuştin, li dijî kesayetên medyatîk sûîkast bên kirin. Wê deriyê parlamentoyê bê girtin, serbazên Ergenekonê wê ji girtîgehan bên berdan. Ez hêvî dikim ku ez şaş derkevim, lê ez ji xetera ku li devê derî ye, pir ditirsim, ji ber ku ez senaryoyeke tarî dibînim.

**Gelo ev senaryoya reş tiştek çawa ye, hûn dikarin hinek vekin?**

Di serî de Serokwezîr, rayedarên AKP, BDP û MHP'ê yên ku zindî mabin, wê bên girtin û bo Girava Yassiada an jî Îmraliyê bên şandin û di girtîgehan de cezayên pir giran bistînin. Paşê wê mudaxaleyeke derve çêbe, hêzên ku ji dervê mudaxale bikin wê li gor şert û mercên wê ji bo demê rêvebiriyekî damezirînin.

**Bi rastî jî zêde tarî ye, gelo qet rêyeke ronî tune ye?**

Ez nizanim ka bejim hêvî an jî ronahî, lê tiştek wisa jî heye. Eger Serokwezîr Recep Tayyip Erdogan, bi armanca ku MHP'ê di bin barajê de bihêle dev ji wan gotin û helwestên xwe yên nijadperest berde û wek ku tê çaverêkirin, roja 12'ê Hezîranê ku dîsa bibe desthilatdar, di heman êvarê de bêje ku ew Yasaya Lêborînê derdixin, hemû astengiyên li pêşiya azadî û ramanan radikin, hemû rêyên demokratîk tên vekirin, wê vî şerî ku li ber derî ye pêk neyê û ev senaryoya reş nayê encamdayîn. Hêviyeke din jî siyaseta sivîl a azadîxwaz a Kurd û Tirkan e. Ev siyaseta sivîl dikare bi projeyên çalak di nava sê mehan de li ser hikûmetê zextan bike ku gavên demokratîk bavêje.

> **Wê tenê ciwan nemirin, mezin jî di nav de, bi hezaran kes wê bimirin. Wê pevçûn di navbera gelan de derkeve, wê avahiyên dewletê û yên medyayê bên bombekirin...**

Bingeh û mercên vê rêyê hene. Ne wisa be, wê ne AKP û ne jî hêzeke din karibe pêşî li xetera devê derî radiweste, bigire.

**Ji bo 15'ê Hezîranê wek roja ku her kes li bendê disekine, tê gotin. Dema em her du aliyan bifikirin, wê gavê divê kî li benda çi disekine?**

Divê dewlet li benda wê rojê bisekine. Wek hûn jî dizanin PKK'ê çend caran agir rawestand, dest bi demên bê çalakî kir, lê li himberê wan tiştek erênî nedît. Dibe ku 15 Hezîranê bibe Mîlada Kurdan. Partiya an jî partiyên ku di 13'ê Hezîranê de bibin desthilatdar, divê derbarê çareserkirina pirsgirêka Kurd de bernameya xwe diyar bikin. Ocalan dixwaze vê yekê bike. Bi kurtahî Ocalan û PKK ji bo hilbijartinan heta 15'ê Hezîranê disekinin. Piştê wê rojê êdî ti astengiyek namîne û dema bê çalakiyan bi dawî dibe.

**Gelo we metirsiyên derbarê 15'ê Hezîranê de ji Ocalan re got?**

Bi rastî ji ber ku dema me pir hindik bû, min nekarî bêjim. Lê ji xwe Ocalan jî wek min bi gûman e. Min derbarê înîsiyatîfa me de agahî danê, wi jî got ku ev proje li gor ramanên wî ne jî.

**We daxuyandibû ku piştî vê hevdîtinê hûn ê an ji Serokwezîr re name binivsînin an jî bixwazin pê re hevdîtinek çêkin. Ev biryara we hîn didome?**

Naxêr, ez niha tiştek wisa nafikirim. Min daxuyanî dan çapemeniyê. Ez di vê demê de pir westiyam, pir êşiyam, ji ber ku hew maye ku ben biqete. Ka em binêrin, derbarê daxuyaniya min de reaksiyonên çawa derdikevin, hefteyek wisa em bisekinin, û hefteya duyemîn belkî ji bo hevdîtina bi Erdogan re hewl bidim.

**Pilanê we yê konferanseke sivîl jî hebû? Didome an na?**

Konferanseke sivîl hê jî di rojeva me de ye. Derbarê rotaya hilbijartinê de, tiştên girîng em difikirin. Em ê di du hefteyên bê de biryarek bidin.

**Pirsa dawî, hûn çima nebûn namzetê serbixwe?**

Ez nebûm namzet, ji ber ez ti carî bawer nakim ku di parlamentoyê de tiştek bê kirin. Ez 8 sal di wir de tevgeriyam, ji min re digotin bi serê xwe wek partiyekê ye. Lê ez niha li pişt xwe dinêrim dibînim ku di wan 8 salan de em ti gavek pêj de necûne. Ti dixwazî ez ji te re bêjim parlemento çi ye?

**Pir baş dibe, fermo...**

Tu çawa leyîstokek dixî destê zarokan ku pê bileyîzin û pê re mijûl bibin, tiştek wisa ye parlemento. Mirov li wir her dem bi tiştek re mijûl dibe, hêviyên xwe dide wir, lê li wir ti pirsgirêkek nayê çareserkirin. Ez naxwazim careke din herim wê derê, ev e mesele.

*Hevpeyvîn: Medya Deniz*

▶Mele Kirêkar bo Komel: Elî Bapîr nikare ji destê Îranê derkeve.

▶Endamekê Serkirdayetiya Yekgirtû: Dîtinên wî biqasî peyvên wî seqet in.

▶Endamekî Serkirdayetiya Komel: Gotinên wî bazarî ne.

# Mele Kirêkar êrişî Komel û Yekgirtû dike, piştgirî dide Tevgera Goran


Wêne: Rûdaw
Mele Kirêkar niha li Norweçê dijî û di bin metirsiya paşveşandina ji bo Îraqê dijî

**Hêmin Baban Rehîm** Hewlêr

Mele Kirêkar, Sekreterê Komel Elî Bapîr bi alîkariya Îranê ya ji bo topbarankirina Kurdên Rojhilat ên li Koye (Koysincak) gunehbar dike û dibêje: "Îranîzma" wî belgeyan naxwaze û derbarê Yekgirtû de jî dibêje: "Yekgirtû pêşengtiya oldarên Kurd nake." Lê bi baweriya wî Tevgera Goran hêjayî piştgiriyê ye û 8 sal in piştgiriyê dide wan.

Mele Kirêkar dibêje, eger her pênc partî (YNK, PDK, Goran, Yekgirtû û Komel) bixwazin, dikarin bi tenê îradeya Kurdistanê bi rêve bibin; "Ji xwe ew kesên ku hinek welatan bi rêve dibin, qasî wan ji siyasetê fêm dikin, lê daxwaz û îradeya wan heye. PDK û YNK nizanin çawa îradeya dewlet û civakê bi rêve diçe, lê li gor kêfa xwe bi rêve dibin. Ji ber ti kes nikare mûhasebeya wan bike."

Mele Kirêkar di hevpeyvînek li gel televizyona NRT dûr dibîne ku rojek ji rojan Yekgirtûya Îslamî bibe deshilatdar û wê bi xewna deve û keran nav dike. Heman biwêjê di bersiva pirsên Rûdawê de jî dubare dike. Ew jî taybet ji ber ne baweriya wan a derbarê bikaranîna hêzê de ye. Li beramber jî PDK û YNK xwedî hêz in û deshilatê di cih de nahêlin. Herwiha di vê derbarê de Yekgirtû şarezayiyek berçav nîne. Di vê derbarê de Dr. Musenna bi vî awayî bersiva Mele Kirêkar dide: "Her partiyek siyasî ji bo wê yekê hatiye damezirandin ku bigihe deshilatê. Çend gotinên wî seqet in, ewqas fikir û dîtinên wî jî seqet in." Bi baweriya wî serkirdeyê Yekgirtû; "Mele Kirêkar ne di wê astê de ye êrişî Yekgirtû bike. Yekgirtû şanaziyê bi wê yekê dike ku projeyek exlaqî ye. Li gel Yekgirtû bi deh hezaran kes fêrî Kurdayetî û Misilmantiyê bûne, xwe parastine bibin beşek ji teror, gendelî yan jî xwe spartinê."

## "Îxwanên Kurdistanê bo micêwên mizgeftan baş in"

Bi baweriya Mele Kirêkar; "Yekgirtû komeleyek exlaqî ye. Ji ber beşek ji medreseya Îxwane, xwediyê fikir, bernameya siyasî û nirxên civakî ne, lê ev Îxwanên li welatê me ji bo wê yekê baş in, mirov bike micêwê mizgef (Kesên mizgeftan paqij û çavdêriya wê dikin) û lijneya karûbarên civakî."

Herwiha Mele Kirêkar dibêje: "Yekgirtû neketiye ber êrişan, ya aniyî serê me (Ensar) û eger nîva wê bê serê Yekgirtû, dibe ku nîva wan dest ji nimêja înê û cemaetê berdin. Eger wek xeyal deshilatê bidin destê Yekgirtû, naxwazin; ji ber ku nizanin çi lê bikin."

## Mele Kirêkar: Elî Bapîrî zilamê Îranê ye!

Di vê derbarê de Dr. Musenna Emîn dibêje: "Ji bo gihiştina deshilatê baweriya Mele Kirêkar bi mekanîzmeya demokrasiyê nayê, timî reşbîniya wî li ser dîtinên wî deshilate. Ew radîkal e û em jî nerm, em bi hêvî ne û ew jî reşbîn e. Ew li gel bikaranîna hêzê, sepandina dîtin û nêrînan e, baweriya me bi wê yekê nayê."

Di berdewama hevpeyvînê de Mele Kirêkar êrişek tund li Komela Îslamî û Sekreterê wê Elî Bapîrî dike. "Zilamê Îranê ye" û nikare ji destê Îranê derkeve.

Lê ku ji Mela Kirêkar dipirsî belgeya wî bo girêdana Komel bi Îranê ve çiye, dibêje ev pir eşkere ye û belge jê re navê: "Îranîbûna Komel belge jê re navê, û eşkere ye. Ez di sala 1984an de ligel mamoste Elî Bapîr çûm Îranê, mêvanê wî bûm û zanim ji çi heyaman ve ligel Îranê têkil e û nikare jî ji destê wan derkeve. Ew pê re westiyane heya ew amade kirine û kirine hejmara xwe."

Komela Îslamî di sala 2001`e de ji ber cudabûna wê ji Bizava Îslamî ya Kurdistanê hat damezrandin. Piştî êrîşên Amerîka li ser Îraqê û topbarankirina baregehên wê partiyê li Xurmal, serokê wê jî ji aliyê Amerîkiyan piştî demekê hat girtin. Niha xwediya 4 kursiyên parlamentoye li Kurdistanê û 2 kursiyên wê li parlamentoya Îraqê hene. Elî Bapîr piştî proseya azadiya Îraqê bo dema 22 mehan ji aliyê Amerîkiyan hat girtin.

Mela Kirêkar Komela wiha bi nav dike: „Komel ne Îranîzim e, na, Komel bi xwe 3 bask in, baskê yekemîn ku her tişt di dest de ye, baskê mamoste Elî Bapîr e û Îranîzim e, baskê Nehze ku di bingeh de Îxwan in û niha sergerdan bûn û nanê zelûliyê dixun. Baskê sêyemîn jî Selefiyên nav Komelê ne ku Îran nahêle derkevin."

## Mele Kirêkar: Ez Noşîrvan Mistefa piştrast dikim ku ev 8 sal in min gotiye ez pişta te digrim..."

## 'Goran li benda mirina Talabanî ye'

Mela Kirêkar weke belgeyek behsa topbarankirina Kurdên rojhilat dike li Koye di sala 1992`yê de û Elî Bapîr bi alîkarîkirina Îranê di birina êrîşan li ser PDK-Î tometbar dike û dibêje: "Mamoste Elî Bapîr di 1992`yê de mamoste Hesen Babkir bi kamerayê şand bo wênegirtina demokratên aliyê Koye, ku wêneyê tevahî girtin, Şehlayî li cem mamoste Elî Bapîr bû li Sereşkewtan li Bêtwate, piştre bo êvarê dîsa li wir bû bo rokêtên Îranê bo lêdana Kurdên rojhilat."

Bîlal Silêman, di bersiva van tohmetên Mela Kirêkar de, dibêje: "Eger mamoste Kirêkar rast dibêje wê demê ligel mamoste Elî Bapîr endamê serkirdayetiyê bû, ji ber çi behs nekiriye. Ev gotina wî bê bingeh e, berovajî wê mamoste Kirêkar û belge li cem me hene di dawiyên sala 1992`an de dibêje ez xwe weke pêşmergeyekî Elî Bapîr dibînim."

Bi baweriya Mela Kirêkar YNK û PDK gendel in û hevkarên hikûmetên gawir û bêol in. Di dirêjiya bersivdana pirsiyarên Rûdawê de, ku bi E-mail ê bersiva wan daye, li ser Tevgera Goran dibêje, "Goran dixwaze sûd ji dem û zemanê werbigire da ku gendeliyên desthilatê zêdetir derbixe û cemaweran zêdetir li dijî wê germ bike. Goran dixwaze belkî Talabanî bimire û YNK`ê rastî parçebûneke din were, herwiha li benda hilbijartinan e."

## Serkirdeyekî Goran: Kesên şerxwaz di nav Goran de nîne.

Osman Banîmaranî, yek ji serkirdeyên Tevgera Goran, red kir ku Goran "Şerxwaz" be û got: "Eger şerxwaz di nav Goran de hebûna, hilbet nedihat dorpêçkirin, kesên şerperest di nav me de nînin, lê beşek ji wan kesên ku berê di nav şoreş de bûn niha di nav Goran de ne."

Mela Kirêkar di vê hevpeyvînê de ligel Rûdawê piştgiriya xwe bo Tevgera Goran û Noşîrwan Mistefa da û got: "Eger ne ji Tevgera Goran bûna opozîsyon jixwe jidayik nedibû. Xurtkirina Noşîrwan Mistefa û Goran, lawazkirina YNK û PDKê ye, lewma hêja ye mirov heta dawî piştgiriya wan bike." Noşîrwan Mistefa weke sekreterê Komela Rencderan, di nav xelkê de weke kesekî Marksîst naskirî bû, lê Mela Kirêkar dibêje: "Em ligel reftarê tevdigerin. Noşîrwan Mistefa li cem min mêrê xurt ê qonaxa xebata niha ya gelê Kurd e, daxwazên wî daxwazên hemû çîn û girseyên Başûrê Kurdistanê ye. 8 sal berê min gotiye piştgiriya wî dikim, biryara min neguherî."

---

Biyografî

## Mele Kirêkar

Navê Mele Kirêkar ê temam, Necmedîn Ferec Ehmed e û sala 1954'ê li Silêmanî ji dayîk bûye. Dîplomeya master li Zanista Fermûde ya Pakîstanê wergirtiye. Li gel eniya Birayên Misilman de bû, di hevpeyvînek a li gel govara Alay Îslamî ku salên 90'an li Kanada dihat belavkirin de dibêje: "Ji ber baweriya wan bi pirsa Kurd nebû, ez ji wan cûda bûm." Dema di sala 1987'ê de Tevgera Îslamî hat damezirandin, ew bû yek ji serkirdeyên wê. Di sala 1992'yê de li gel xêzana xwe çû Norweçê, rojnameyek bi navê Kurdistan derxist û piştre vegeriya Kurdistanê. Piştî parçebûna Tevgera Îslamî, ew bo serpereştê hêza Soran. Piştre li gel Cund El-Îslam, grûba Ensar El-Îslam damezirandin û bû sekreterê wê. Grûba Cund El-Îslam û Ensar El-Îslam ji êrişên Xêlî Heme, terorkirina Frenso Herîrî, derxistina gora Şêxên Neqşebendî, gelek êriş û teqînên din berpirsyar in. Berî hilweşandina rejîma Saddam, Amerîka bi roketan êrişî baregehên Ensar ên li Hewram, Îran û derdora wê kirin.

Mele Kirêkar ji bilî siyasetê, nivîskar û helbestvan e. Çend pirtûkên wî hene û gelek ziman dizane. Wî li Avganîstanê Usame Bîn Ladîn dîtiye û xwe wekî xwendekarekê Ebdullah Ezam datîne. Sala 2005'ê li ser jiyana xwe pirtûkek bi zimanê Norweçî nivîsandiye. Çar kurên bi navê Seyd Quteb, Îbn Teymiye, Mealim û Zeylal hene.

Car caran li Norweçê nîqaş li ser mana wî ya li Norweçê derdikeve, hinek caran ji aliyê Îraqê ve daxwaza wî tê kirin. Lê dadgeha Norweçê ne amade ye radestî Îraqê bike, ji ber li Îraqê cezayê bidarvekirinê heye.


Wêne: Rûdaw

> "Piştî ku hatim girtin, çavên min girêdan û ez şandim cihekî nepenî, heftiyekê li wir mam, di wê demê de pir hatim îşkencekirin, bi ser de jî destdirêjiya seksî birin ser min. Hez dikim li vir bimirim ne ku min bişînin Îranê."



Mîna wan penaberên Kurd li Brîtanyayê, vî penaberî jî ji bo protestokirina siyaseta dewleta Yûnanistanê ya li hemberî penaberan, devê xwe dirûtî ye.

### Ji bo Brîtanya wan dersînor neke

# Penaberên Kurd devê xwe didirûn

**Brîtanya (Rûdaw) –** Şeş penaberên Rojhilatê Kurdistanê ji bo redkirina biryara hikûmeta Brîtanya ku dixwaze wan dersînorî Îranê bike, li bajarê London ketine grevê, hinekan ji wan devê xwe dirûtine.

Li gor raporeke rojnameya Daily Mail a Brîtanî, ev her şeş kesên Kurd ji 4'ê Nîsana îsal ve nan nexwarine û hinek ji wan bi tayên masîgirtinê devê xwe dirûtine. Ev her şeş penaberên Kurd ji wê yekê ditirsin ku Hikûmeta Brîtanya wan vegerîne Îranê. Penaberên Kurd dibêjin ew piştî beşdarîkirina di xwepêşandanên 2009'ê de li Îranê, ji aliyê hêzên ewlekariyê yên Îranê hatine girtin û îşkencekirin.

Ev penaber li pêşber baregeha ajansa çavdêrîkirina sînorên Brîtanya UKBA ketine grevê û çend kesên din jî li pêşber baregeha rêxistina Amnesty International li Londonê ketine grevê. Keywan Beharî (32) yek ji van penaberên ku beşdarî grevê bûye û dibêje: "Gava li Tehranê bûm, min bi rêya satelîta me ya awarte her rojekê Barrack Obama û berpirsên Brîtanî didîtin ku em germ dikirin ku berdewam bin di xwepêşandanên xwe de. Wan ragihand ku piştgiriya me dikin, lê niha li vir pêwîstiya me bi hevkariya wan heye, lê haya kesî ji me tune."

Penaberekî din bi navê Mahir Meyarî (17) piştî xwepêşandanan hatiye girtin û dibêje: "Piştî ku hatim girtin, çavên min girêdan û ez şandim cihekî nepenî, heftiyekê li wir mam, di wê demê de pir hatim îşkencekirin, bi ser de jî destdirêjiya seksî birin ser min. Hez dikim li vir bimirim ne ku min bişînin Îranê." Mahir dibêje piştî azadkirina wî pere dane qaçaxçiyekî da ku wî ji Îranê derxîne û pêşî nizanibû tê Brîtanya: "Gava min daxwaza mafê penaberiyê kir, bawer nekirin ku temenê min 17 sal in, wiha zanibûn derewan dikim. Li cem berpirsên penaberan li Brîtanyayê adeta wan a bawernekirinê heye, wisa nêzikê her kesekî dibin."

Li Brîtanyayê salane daxwazkariya mafê penaberiyê ya bi sedan penaberan tên redkirin. Piştre piraniya wan tên dersînorkirin. Li gor îstatîstîkeke ajansa UKBA, daxwazkariya ji sedî 76'ê penaberan bo wergirtina mafê penaberiyê hatiye redkirin.

### Meletiyên li Almanya piştgirî dan namzetên serbixwe

## Tuncel: Di hilbijartinê de şeqama mezin tê!

**Bottrop (Rûdaw) -** Li Almanya bajarê Bottropê Kurdên ji Meletî-Kurecîkê hatin cem hev û piştgirî dan namzetên serbixwe yê Meletiyê Ganî Ruzgar Şavata. Parlamentera Stenbolê ya bi eslê xwe ji Meletiyê ye, Sebahat Tuncel jî de şahiyê de axivî û got, "her kes behsa şeqama min dike, lê şeqama mezin gelê me di hilbijartinan de wê li wan xe."

Şeva piştgiriyê ya Kurdên Kurecîk a ser bi Meletiyê Roja 14`ê Gulanê bi slogana "Em xwedî li nasname, çand, ziman û pêşeroja xwe derkevin" li bajarê Almanya Bottropê di avahiya Saalbau hatin cem hev. Di şeva piştgiriyê de namzeta serbixwe ya Stenbolê Sebahat Tuncel, Serokê BDP`ê yê Meletiyê Fahrettin Tuncel, Cîhgirê Federasyona Elewiyên Bektasi Kemal Bulbul, Pîr Alî Balî û dîrokzan Mehmet Bayrak amade bûn û axivîn.

Şahî bi axaftina amadekarên şevê Ayten Kaplan û Îsmet Çelik dest pê kir. Amadekarên şevê bang li Meletiyiyan kirin ku bi hemû derfetan piştgirî bidin namzetên xwe Ganî Ruzgar Şavata. Namzeta Stenbolê Sebat Tuncelê da zanîn ku ew tiştên mezin ji Meletiyiyên li Almanya dijîn, hêvî dikin: "Hûn dikarin gelek tiştan bikin, yên ku dikarin herin welat bila li wir dengên xwe bidin, yên ku nikarin herin bila bi derfetên teknîkî xwe bigihînin xizm û dostên xwe da ku dengên xwe bidin namzetên xwe." Tuncelê hejmara Kurdan a li Tirkiyê ku wek 25 milyon tê texmînkirin bibîr xist û got, "Dibêjin hejmara we ewqas e lê hûn tenê 2,5 milyon deng distînin. Ka Kurdên din çima deng nadin we? Ji ber vê yekê divê em di vê hilbijartinê de bi xebateke xurt dengên xwe bikin herî kêm 5 milyon." Di dawiya axaftina xwe de Tuncelê gotin anî ser şeqama xwe ya ku li polîsekî Tirk xistibû û got, „Ez dizanim ku her kes behsa şeqama min dike, lê şeqama mezin wê gelê me di hilbijartinan de li wan bixe."



Wêne: Rûdaw

Sebahat Tuncel li ber deriyê salonê bi gulan hat pêşwazîkirin

Mehmet Bayrak, Pîr Alî Balî û Kemal Bulbul jî rexne li Elewiyên nêzikê dewletê ne, kirin û got, "Ev şev ne tenê şeva Kurdên Elewî ye. Em di navbera Şêx Seîd û Seyîd Riza de wek pire ne. Wê têkoşîna me kemalîstan bîne rê û wê lêborînê ji me bixwazin."

Hunermendên wek Ozan Comert, Hasan Yildiz, Zilan, Mehmet Akbaş û Koma Çar Newa hatin ser dikê û bi kurmancî, zazakî, soranî û tirkî stranan gotin.

Ji ber xatirê kiryarên Ereb

# Xwaringehên “Kurdî” yên Brîtanya dibin “Îraqî”

▶Eger em xwe wek xwaringeheke Kurdî bidin nasîn wê muşteriyên me yên Ereb neyên



Wêne: Rûdaw

**Brîtanya (Rûdaw) –** Hejmareke zêde ya xwaringehên Kurdî yên Brîtanya weke xwaringehên “Îraqî” tên naskirin. Xwediyên van xwaringehan dibêjin “Di kar de çênabe mirov bi nijadperestî birame”, bi baweriya wan jî çanda piraniya Kurdan a çûna xwaringehan tune û Ereb zêdetir berê xwe didin xwaringehên Kurdî, “Lewma eger em xwe weke xwaringehên Kurdî bidin nasîn, mêvanên me yên Ereb nayên.”

Li ser pencereya derve ya xwaringeheke mezin û modern li bajarê Birmingham bi erebî û bi kurdî hatiye nivîsandin ‘Xwaringeha şevên Îraqê’. Xwediyê xwaringehê Kurd e, xwarinçêker û karmendên din hemû Kurd in, lê xwaringeh weke “Leyalî Iraq - Şevên Îraqê” xwe dinasîne. Xwediyê xwaringehê Amanc Hesen mêrekî devbiken û xort e û ev 12 sal in li Brîtanya dijî. Ew venaşêre ku wî hez dikir navekî kurdî li xwaringeha xwe bike, lê “Di kasibîkirinê de çênabe mirov bi nijadperestî birame.” Her çiqasî li bajarê Birmingham hejmareke zêde ya Kurdan lê dijîn û kar dikin, lê hejmara mêvanên Kurd li xwaringeha şevên Îraqê pir kêm e. Bi gotina Amanc: “Kultûra Kurdan a xwarina nan li derveyî malê lawaz e. Xwaringeha me pir modern e û astê xizmetguzariyên me li serî ne, ev jî ne tişteke ku gelek Kurdên vir li pey bin, lê dibe ew li pey xwarinên erzan û lezgîn bin. Zêdetir Kurdên xwendevan û xêzandar tên cem me.”

## Em bixwazin nexwazin xelkê Îraqê ne

Amanc, ku xelkê bajarê Hewlêrê ye, derbarê sedemê hilbijartina navê Şevên Îraqê de dibêje: “Ev nayê wê wateyê ku me Kurdîniya xwe ji dest dabe, berovajî, em xwe ji her kesekî din Kurdtir dibînin. Lê Kurdan hergav di van meseleyan de înîsiyatîf girtine destê xwe. Li Îraqê Ereb, Turkmen, Kurd û Aşûrî hene, gelek mezheb û ol lê hene, lewma li gor me giring bû em însyatîfê bigrin dest û van milletan li cihekî wekî vir kom bikin.” Çêdibû navê bajarekî Kurdistanê li xwaringeha xwe bike, lê tirsiyaye ku ev hestê bajarparêziyê tîr bike û zerermend be: “Lewra divabû navê welat hilbijêrin.” Derbarê wê yekê ku ji ber çi navê “Kurdistan” weke welat ne hilbijartiye, Amanc dibêje: “Ev jî dibû sedemê nijadperestiyê di navbera Ereb û Kurdan de. Wê demê bê guman Ereb nedihatin ba me.”



Wêne: Rûdaw

Şahîn Hîşmetî yek ji şagirtên xwaringehê û xelkê bajarê Kirmaşan ê Rojhilatê Kurdistanê ye. Şahîn dibêje ku ti pirsgirêka wî ligel nav tune, herwiha dibêje: “Piraniya mêvanên me Ereb in. Gava ew dibînin ku em bi kurdî dipeyvin û pêşwaziya wan dikin, dizanin ku em Kurd in, lê ti pirsgirêka wan ligel vêya tune.”

Li ser yek ji maseyên xwaringehê jî hejmareke ciwanên Kurd rûniştî ne ku li Birmingham dijîn. Ew her çiqasî dixwestin navekî kurdî li wê xwaringehê bihata kirin, lê weke kêşeyeke zêde mezin jî nabînin. Yek ji wan dibêje: “Keko, jixwe xwediyê wê Kurd e û pereyên wê diçin paşila Kurdekî, yanî ne giring e navê wê çi ye.” Hevalekî wî jî ji wî aliyê maseyê piştgiriya gotina wî dike û dibêje: “Keko, em bixwazin û nexwazin xelkê Îraqê ne, çima şaş e navê vira ‘Leyalî Îraq’ be?”

## Di navbera ‘business’ û ‘sozê’ de

Li Londonê jî, bi heman awayê Birminghamê, xwaringehên Kurdî pir in ku weke “Îraqî” hatine naskirin. Di malpera www.allinlondon.co.uk de ku taybet e bi agahiyan derbarê pêwîstiyên jiyanê li Londonê, navê 9 xwaringehên “Îraqî” hene. Di nav wan de 6 xwaringehên Kurdî hene ku yek ji wan xwaringeha Serçinar e ku Ehmed Elî Beg xwediyê wê ye. Navborî di xwaringeha xwe de, ku mêvanên Ereb, Kurd û Îngilîz lê rûniştîbûn, dibêje ku divê du tişt ji hev bên cudakirin, “Ku ew jî bîznis (business) û soz in. Kesek ku dixwaze pereyan peyde bike nikare tenê bi sozdarî birame. Divê plan û bernameyeke wî hebe ku çawa pereyan peyde dike û kî kiryarê wî ne.” Ew derbarê kiryarên xwe de dibêje: “Ji sedî 90 Ereb in, ji sedî 5 Kurd in û ji sedî 5 jî biyanî ne.” Ew her çiqasî bi xwe ne ligel wêya ye ku navekî ne kurdî li projeya xwe ya bazirganî bike, yan mohra Kurdîniyê ser wan rake, lê dibêje: “Gava xwaringeheke kurdî navekî ne kurdî bikar tîne, yan xwe weke xwaringeheke Îraqî dide nasîn, ne nîşana wê yekê ye ku ew kes ne niştimanperwer û Kurdperwer e, mesele hemû ew e ku bîznis bi sozdariyê nayê kirin.”

## Çanda nanxwarinê li ba Kurdan

Derbarê sedemê kêmbûna mêvanên Kurd li xwaringehên Kurdî yên Brîtanyayê, Ehmed Elî Beg dibêje: “Sedemê wê vedigere wê yekê ku piraniya Kurdan ne ji zûve hatine Brîtanyayê. Dibe ku di nav wan de kes hebin ku heftane 250 Poundan yan zêdetir peyde bike. Bi van pereyan çawa dikare berdewam here derve?” Wekî din mînaka endezyarek yan pizîşkekî Ereb tîne ku astê dahata wan li Brîtanyayê pir bilind e û nanxwarin li derve bandorê li ser rewşa wan a darayî nake.

Sedemekî din bi baweriya navborî ew e ku “Xêzana Kurd li derveyî welat jî wisa fêr bûye ku herdem li male xwarinê amade bike. Lewma kêmtir kesê Kurd tevî malbata xwe berê xwe didin xwaringehên derve.” Ew dibêje li cem Ewrûpiyan xwarin li derve weke sefer yan meşeke xweş e: “Ku mêrekî Ewrûpî jina xwe yan zarokê xwe dibe restorantekê, wisa hest dike ku bi vî karî rêza wan girtiye, lê li cem me, em wê demê hest dikin ku rêza me hatiye girtin ku li malê xwarina me bê amadekirin.”


Amanc Hesen

**Piraniya muşteriyên me Ereb in. Gava ew dibînin em bi kurdî dipeyvin dizanin em Kurd in, lê ti pirsgirêk dernaxin.**

**Gava Kurdekî navek kurdî li xwaringeha xwe neke, nabe em bêjin ew ne niştimanperwer e; mesele ew e ku bîznis bi sozdariyê nayê kirin.**


Ehmed Elî Beg

# Festîvalek li dijî Faşîzmê: Cannes


Cara yekem li ser navê Kurdan di sala 1983'ê de Yilmaz Guney bi fîlmê xwe 'Rê' tevlî Cannesê bû...

**Alî Guler**

Cannes, an jî navenda biheşte ya ser ruyê erdê... 64 sal in bi hêz û tevlêbûnek mezin berdewam e. Heta niha gelek fîlm û derhêner ji vir derketin û di cîhanê de hatin naskirin û ev jî bû sedem ku Cannes bibe navenda sînemaya cîhanê. Kurd jî di vê buhiştê re derbas bûn: Yilmaz Guney, Hiner Salem û Bahman Qubadî di ser xaliça sor de meşiyan...

Sînema wek yek ji 7 hunerên sereke tê qebûlkirin, lê li gorî hinekan jî sînema biheşta ser rûyê erdê yê. Lê sinema tilsîmek e û hîn jî nehatiye kefşkirin. Ev hunera efsûnî xwedî temenekî zêdetirî 100 salî ye. Cihekî ku îro sînema neçûyê, tune ye, an jî kêm e. Ev tilsîm ketiye her derê, jiyane hemû mirovan dorpeç kiriye. Gava herdu birayen Fransî yên bi navên Auguste Marie Louis Nicolas Lumière û Louis Jean Lumière yekemîn car çend dîmen pêşkeşî hejmarek temaşevanan kirin, wê çaxê sal 1895 bû. Piştê vê mîlada sînemayê bi 45 salan, Festîvala Navnetewî ya Fîlman a Cannesê cara yekemîn destpêkir. Fikrê lidarxistina vê festîvalê jî ji dijberiya Îtalyan û Almanan derket holê. Faşîzma Îtalya û Almanyayê hemû Ewrûpa dorpeç kiribû, wek ahtapotek. Fransiyan wê deme li navçeya Montra de Venise yê pêşbirka fîlman çêdikirin. Faşîzmê jî beriya 70 salan mudaxeleyî vê çalakiya çandî kir û Fransî hêrs kirin. Ji ber vê yekê ev festîvala navnetewî ya bi îhtîşam derket holê. Kerba Fransiyan a li dijî faşîzmê bû sedema festîvalek wisa. Festîval ev 64 sal in bi hemû hêza xwe berdewam e. Heta îro jî xelatên herî giranbuha li vê festîvalê tên belavkirin û dibin sedemê naskirina derhêner û lîstikvanên sînemayê li seranserê cîhanê.

## Heta niha wek Kurd Y. Guney, H. Salîm û B. Qubadî li ser xaliça sor meşiyan




### Cannes: Gundê masîvanan

Ev bajarokê li ber perê Derya Spî beriya festîvala fîlman gundekî biçuk ê masîvanan bû. Heta 200 sal berê navê vî gundî di xarîtê de jî tune bû. Wek St. Rapael, Antibes, St Maxime, Cannes jî navçeyek li ber behre bû. Lê qedera Cannesê di sala 1938'ê de hat guhertin. Ji ber destwerdana faşîzmê Wezîrên Çandê yên Fransa bi navê Jean Zay û Philippe Erlanger, ketin dewrê û gava bingeha Cannesê avetin. Lê ji ber şerê Cîhanê yê duyemîn, festîvalê di sala 1946'ê de destpêkir. Û yekemin "Xelata Zêrîn" di wê salê de hat dayîn. Xwediyê yekemîn xelatê jî Jacques Becker bû. Becker bi fîlmê xwe yê bi nave "Antoine et Antoinette" xelat wergirt. Di sala 1948'ê û 1950'î de jî festival ji ber pirsgirêkên aborî li dar neket. Lê di salên paştir de hîn bihêztir berdewam kir. Heyanî sala 1968'ê Cannes bê navber berdewam dike. Lê di vê salê de disa hat astenkirin. Îcar ne ji ber pirsgirêke aborî û şer, vê carê ji ber heraketa şoreşgerî ya 68'ê festîval di nivî de dimîne. Gava di 19'ê Gulanê de greva mezin çebu, salona festîvalê jî aliyê çalakvanan ve hat îşgalkirin û festîval di nivî de ma. Gelek derhênerên navdar jî piştigirî dabûn vê çalakiyê. Dîsa di dîroka festîvalê de bûyerek herî giring di sala 1971'ê de pêk hat. 25. Festîvala Navnetewî ya Cannesê xelata "Legion d'Honneur" da lehengê sinemaya bêdeng Charlie Chaplin. Sala 1983'yê li Cannesê cîhê festîvalek nû çêbu. Ev cîh li ber pêrê Deryaya Spî ye.

Bi dehan salonên sinemayan hene. Salona herî mezin jî ya navendê ye, cihê nezikî 3 hezar kesî tê de heye. Her sal di nav 10 rojan de bi sedan fîlm di çerçoveya festîvalê de di van salonan de tên pêşkeşkirin. Dema festîvalê ev bajarok bi hezaran motîvên sinemaya tê xemilandin û wêneyên listikvanên navdar tên daliqandin. Di rojên festîvalê de nezikî 40 hezar kes ji her deverê cîhanê tên Cannesê. Bajar di warê aborî de jî gelek biha ye. Xwarin, vexwarin û razan zêde giran in. Ji bo rojekê bihayê odeyekê heta 15 hezar Dolar berjor diçe. Cannes 64 sal in bi hêzek mezin û giran didome. Wekî hersal, îsal jî di navbera 11 û 22'yê Gulanê bi dehan fîlm ji bo xelata "Palma Zêrîn" di pêşbirkê de ne.

### Kurd jî li Cannesê li ser xaliça sor meşiyan û xelat wergirtin

Li Cannesê bi hezaran derhêner û listîkvan xwe dan naskirinê. Heta niha çendîn lîstikvan û derhênerên Kurd jî tevlî festîvala fîlman a Cannesê bûne. Cara yekemîn di sala 1983'yê de derhênerê Kurd ê navdar Yilmaz Guney bi fîlmê xwe yê bi navê "Rê" (YOL) li Cannesê ket pişbirkê û xelata " Palma Zêrîn" wergirt. Fîlmê Rê xelata Palma Zêrîn tevî fîlmê "Missing-Wenda" yê Costa Gavras wergirt.

Yilmaz Guney bi vî fîlmê xwe cara yekemîn navê Kurdan û sinema wan li cîhanê da nasandin. Rê Yilmaz Guney vekir û 17 sal şûnde Bahman Qubadî da ser wê rêyê û meşiya. Qubadî bi fîlmê xwe yê bi navê "Dema Hespê Serxweş" xelatên "Kamera Zêrin" û "Rexnegerên Navnetewî" wergirt. Qubadî di sala 2009'ê de jî bi fîlmê " Kes Behsa Pisîkên Îranê Nakê" ji Cannesê welat wergirt. Hiner Salem jî di sala 2005'ê de bi "Kîlometre Zero" ji bo " Palma Zêrîn" çu Cannes ê di pişbirkêde bû. Heman salê Wezîrê Çandê yê Fransayê Renaud Donnedieu de Vabres xeleta " Nîşana Şovelye" da Salem. Wekî din derhenerên Kurd Yuksel Yavuz, Kazim Oz, Shahram Alîdî, Ekrem Kro, Firat Okçuoglu jî bi fîlmên xwe çûn Cannesê û li tevlî festîvalê bûn.

# Xelatên Fîlmamed li 3 fîlman hat parvekirin!

Xelatên Fîlmamedê ji derhênerên belgefîlman Ekrem Heydo, Azîz Çapkurt û Rodî Yuzbaşi re çûn

**Amed (Rûdaw) -** Rojên belgefîlmên Amedê bi dawî bû. Di mîhrîcanê de 3 belgefîlm xelata herî baş a Fîlmamed wergirtin. Yek ji wan jî belgefîlma Ekrem Heydo ya bi navê "Zarokên Wendayî yê Halepçe" bû. Li Amedê bi alîkariya Şaredariya Kayapinar û Navenda Cîwan Çand û Huner a Cegerxwîn, "Rojên Belgefîlm" yên li Amedê (Fîlmamed) di 12 Gulanê dest pê kir û di 15 Gulanê de bi belavkirina xelatan bi dawî bû. Di galaya xelatan de gelek kesên navdar, sînemavan û siyasetmedarên Kurd jî amade bûn. Ji bo Fîlmamed di serî de 70 belgefîlm serîlêdabûn. Lê di nav wan de ji bo pêşbirkê 14 belgefîlm hatibûn hilbijartin. Di dawiyê de, xelatên Fîlmamed, li 3 fîlman hat parvekirin. Ev belgefîlmên xelat wergirtine ev in: "Zorakên Wendayî yên Halepçe - Ekrem Heydo", "Diya Min Aştiyê Dixwaze -Azîz Çapkurt", "Miraz - Rodî Yuzbaşi". Di mîhrîcanê de xelata teybet a jurî a bi navê Halîl Dag jî fîlmê bi navê "Ulucanlar - Murat Ozçelîk wergirt. Di galayê de li ser navê juriyê Ahmet Soner axivî û got; "Gelek belgefîlmên baş hebûn. Me xelata Fîlmamed di nav sê fîlman de parvekir." Serokê şaredariya Kayapinarê Zulkuf Karatekîn ku niha di zîndana Amedê de dimîne, payamek şand.



Wêne: Rûdaw


Wêne: Rûdaw

# Asayiş rê nade vekirina kanaleke Hewramî

Xwediyê projeyê dibêjin ji ber ku televizyona wan wê piştgiriya ti aliyê siyasî neke, rê li ber vekirina wê tê girtin.

**Silêmanî (Rûdaw) –** Emîn Hacî ku sermayedarekî Hewramî ye, ji bo Rûdawê ragehand ku nêzîka du salane asayişa giştî li Silêmaniyê rê nade vekirina kanaleke taybet bi zaravê Hewramî.

Emîn Hacî ku xwediyê proje ye, ragehand: "Me hemû amadekariyên kanalê kirine, amûrên wê amade ne, kanaleke çandî dibe û pexşa wê navxweyî dibe û karê me bi siyasetê jî nabe û baregeha wê ya serekî li Silêmaniyê dibe." Emîn Hacî herwiha got ku ji Hezîrana par ve daxwaza moletê ji Wezareta Navxwe ya Herêma Kurdistanê kirine, lê wezaretê ji ber ku asayişa giştî li Silêmaniyê gotiye "Di warê ewlekariyê de metirsiya me ji vekirina wê heye" molet neda me. Emîn Hacî wiha got: "Her çiqasî hejmareke zêde ya berpirsên YNK û PDK'ê piştgiriya projeyê dikin, lê ji ber em rê nadin ku kanal xizmeta ti partiyeke siyasî bike, rê li ber vekirina wê tê girtin."

Berpirsên ewlekariya giştî li Silêmaniyê daxuyaniyan derbarê rêlibergirtina vekirina vê kanalê nadin. Rûdawê têkilî ligel Berpirsê Beşê Ramiyarî Nasir Mihemed û Rêvebirê Giştî yê Asayişa Silêmaniyê Hakim Qadir danî, lê wan ti daxuyanî derbarê nedana moletê ji bo vê kanalê nedan.

## Kurd Picture keşe Jones dike film

**Hewlêr (Rûdaw) –** Piştî hewldana şewitandina Quranê ji aliyê keşeyekî Amerîkî ve, derhênerekî Îranî kurtefîlmekî bi navê "200" li Kurdistanê kişand. Fîlm behsa bihevre jiyana olî û hevdu qebûlkirina navbera olan dike.

Derhênerê kurtefîlmê 200 Suhêl Soxen Pejo ku ev çend roj in dawî li wênegirtina fîlm aniye, ji bo Rûdawê ragehand: "Ramana kişandina vî kurtefîlmî di encama gefa keşeyekî Amerîkayî de hat, ku di 11'ê Îlona sala 2010'ê de gef xwar ku 200 hebên Qurana pîroz bişewitîne. Weke bersivekê li ser vê helwêsta xirab, me jî bi gur û tînî dest bi çêkirina fîlm kir."

Ev fîlmê ku niha di qonaxa montajkirinê de ye û direjiya wî 19 xulek in, weke Suxen Pejo dibêje, "Fîlm hilgirê peyameke aştîxwaz e di navbera olan de û wê yekê pêşkêş dike ku her corekî tundûtûjiyê vahiyeke mezin di navbera mirovan de derdixe, loma min hizra çêkirina film kir, heta ku bibe hevêna bihevre jiyan û hevdu qebûlkirinê."



Di vî fîlmî de, akterê ciwan Serheng Xerîb rola serekî û rola keşe Terry Jones dilîze. Piştî xilasbûna film, ew ê ji bo tevahiya kanalên navxwe û asmanî yên Kurdî, Erebî û Îranê bê pêşkêşkirin û dûre jî li ser înternêtê bê weşandin.

Fîlm ji aliyê gruba fîlmçêkirinê ya Kurd Picture ku li Hewlêrê ye, tê çêkirin.

Rûdaw bazirganiyek tirsnak eşkere dike

# Li Kurdistanê bazara gurçikan


Wêne: Rûdaw

Delalek

Hêvîdar Ehmed Hewlêr

Bijîjkên Kurd berî çar salan nûçeyek kêfxweş belav kirin, dema ji bo cara yekemîn neştergeriya guhertina gurçikan li nexweşxaneya Rizgarî ji bo kesekî Dihokî encam dan. Lê vê neştergeriyê bazirganiyek tirsnak li pey xwe anî, ew jî bazirganiya firotina gurçikan e û bi rêya çend grûban tê kirin. Rûdaw di şopondinek rojnamevanî de çawaniya wê bazirganiyê eşkere dike.

Dîtina wê bandê ji nexweşxaneyek taybet a Hewlêrê dest pê kir û li wê derê neştergeriya guhertina gurçikan dihat kirin. Me ji resepsiyona nexweşxaneyê pirsî, nexweşek me heye û bijîjk jê re gotiye, pêwîstiya wî bi guherîna gurçikan heye. Wan jî di cih de gotin; "Kesek heye ku gurçika xwe bideyê." Min jê re got, ez ji Zaxo hatime, min kes nedît û ji min re gotin, li wê derê xelk hene ku gurçikên xwe didin. Lê wan gotin: "Divê tu kesekê bibînî û gurçika xwe bide nexweşê te, piştre nivîsa Wezareta Tendurûstî û Dadgehê bîne." Li wê resepsyonê sê kes hebûn û piştî axaftinek veşartî ya di nava xwe de, yekê got: "Delal (navberkar) heye bibîne û gurçikê jê bikire." Min jî daxwaza hêjmara telefona wî delalî kir, lê gotin em nizanin û gotin: "Piraniya kesên wî karî dikin Ereb in, here cadeya bijîjkan dibe ku tu wan li wê derê bibînî." Lê çûna min a cadeya bijîjkan bê sûd bû û min ti kes nedît. Ez dubare vegeriyam wê nexweşxaneyê.

### Pirs li ser pirsê...

Min li wê nexweşxaneyê pirsa kesên ku bi niyetin gurçikên xwe biguherînin, xwe nêzî çend kesan kir ku behsa guherîna gurçikan dikirin. Kesûkarên yek ji nexweşên ku gurçika xwe diguherîne dibêje: "Me ji bo guherîna gurçika nexweşê xwe, 30 milyon dînar xerc kiriye." Min pirs ji wan kir ku we çawa ew gurçik bi dest xist, lê xwe ji pirsa min didizî û lewra min hest bi wê yekê kir ku mijar hestyar e: "Ez ê hêjmara telefona delalekê bidim te, lê bi şertê ne ez te nas dikim û ne tu min nas dikî."

Min telefon da wê hêjmarê û min gotê, pêwîstiya min bi gurçikekê heye. Got, ez ê piştî nîv saetek din peywendî li gel te bikim. Lê piştî 20 deqîqeyan telefonî min kir, hêjmarek da min û got, "Têkilî li gel wê hêjmarê deyne, li Kerkûkê ye."

Min telefon dayê û ji min pirsî: "Tu xelkê kîjan navçeyê yî, gurçik bo çi ye, xwîna nexweşê we çi ye, temenê wî çend e?" Bi awayekê pirs dipirsî, wekî ez dîlek di bin destê wî de bim. Piştre got, li benda bersivê raweste û min jî gotê, "Kengê?" Wî jî got, "Ew ne karê te ye."

Piştî kêliyekê ez li bendê mam, ew kesê li Kerkûkê rûdinê, telefon kir, hêjmara tefonekê da min û got, li gel 'E.' biaxive. Min di cih de telefon kir, ew jî ji wê mameleyê agehdar kiribû û ji min re got, "Ez ê piştî saetek din telefon bidim te." Piştî 20 deqeyan telefon da min û me cihê dîtinê li Hewlêrê destnîşan kir.

### Mameleyê ji çayxaneyê dest pê kir

Li wî cihî 4 çayxane hebûn. Despêkê em çûn çayxaneyekê, lê piştî sê deqîqeyan got, rabe em biçin. Em çûn çayxaneyek din, lê li wê derê jî aramiyê negirt. Wisa hest dikir ku kesek çavdêriya wî dike, li wê derê sê kesên din hatin gel û du ji wan Ereb bûn. Got: "Kerem bike tu çi dixwazî?" Min jî got, nexweşekê me heye, bijîjk dibêjin; pêwîst e gurçika wî bê guhertin: "Pir hêsan e." Pirsa cûrê xwînê kir, min got: "A+" e. Wî got: "We şansek baş heye û niha ciwanek heye."

Me dest bi mamelekirinê kir, 'E.' got: "Nirxê gurçikê 11 milyon dinar e. Ji bo test û bijîjk pêwîstî bi 2 milyonan heye. Herwiha 600 hezar dînar ji bo noter û testek taybet li Bexda. Herwiha pêwîst e heta roja neştergeriyê rojane 60 hezar dînar bidî kesê ku gurçika xwe difiroşe. Piştî neştergeriyê wê rojekê li nexweşxaneyê bimîne, tu wê 6 rojan jî li otelek baş danî û heta ew kes tê ser hişê xwe."

'E.' bi temamî ketibû nav wî karî, hemû rê û rêbazek dizanî. Ji min re dibêje: "Tu wê bibî gel 5 bijîjkan (Navê 5 bijîjkan got) û wê testa wî bikin. Bijîjk 'S.' wê neştergeriya wî bike û ew jî 13 milyon dînaran dixwaze."

### "Noter û test rûtîn in"

Neştergeriya guhertina gurçikan ne wisa hêsan e, belkî pêwîstî bi rê û rêbazên yasayî û tendurûstî heye. Lê 'E.' bê minet axivî û digot: "Tu xema wan tiştan nexwe, ev çend tiştên rûtîn in."

Derbarê testê de jî got: "Labaratovara me bi xwe heye û wê hemû karên we bîne cih. Navê wê labaratovarê 'H.H.' ye û li Hewlêrê ye. Lê 'E.' derbarê noter de hişyarî da me, "Haya we ji we hebe, şaşitiyan nekin û nekevin rîskê. Wê pirsa kirîna gurçikan ji we bikin, bêjin me nekiriye. Divê hûn bêjin, ev kes nasê me ye."

Li gel noter divê mirovên kesê ku gurçika xwe difiroşe, bav yan jî dayîka wî amade be, lê 'E.' vê yekê jî rûtîn dibîne û dibêje: "Mereqan neke, ez ê wê jî amade bikim."

Mameleya navbera min û 'E.' bi dawî bû, niha 'E.' li benda bersiva min e. Berî em xatir ji hev bixwazin, got: "Zû peywendî bike, ji ber mişteriyên me hene. Lê heya tu hebî, em nafiroşin kesek din."


Wêne: Rûdaw

Gurçikfiroşek birîna xwe pêşan dide

### Herî zêde Sedir gurçikên xwe difiroşin Kurdan

Ji aliyê 'E.' ve eşkerekirina navê wê labaratovarê ji min re bes bû. Bijîjkekê wê labaratovarê behsa bazirganiya gurçikan kir û got: "Kesên ku gurçikên xwe difiroşin, piraniya wan Ereb in û ji xelkê Bexda ne, li Bexda jî piraniya wan rûniştvanên bajarê Sedir û girêdayî Mûqteda Sedr in." Wî bijîjkî got ku dîtina gurçikan ji ber wî delalî pir hêsane û got: "Gelek kes hene û tên gurçikan bi firoşiyê, lê gurçikên wan kêrî hev nayên. Piştî du rojên din, gurçikfiroşek din tîne."

### Kesên gurçikan dikirin çîroka xwe dibêjin

Serdar Berwarî (60) ji bo guhertina gurçika xwe berî 4 salan çû Bexda û dibêje: "Li wê derê dîtina gurçikan ne zehmet e û min bi hêsanî karî delalekê bibînim." Serdar derbarê nirxê wê de got: "Wê demê nirxê gurçikê erzan bû, min bi 6 milyon dînarî kirî û nîva wê ji bo delal bû."

Kameran Mistefa (24) wî jî gurçika xwe guhertiye û dibêje: "Min heta niha 5 gurçik kirîne, lê piştî çandina wan, poç der dikevin. Min cara pêncem gurçikek kirî, bijîjkan ji min re danî û niha hinekê baştir bûme."

### Klînîka bijîjk 'S.' cihê dîtina delalan

Di encama wê şopandinê de derket holê ku ji bo dîtina delalên bazirganiya gurçikan cihê herî hêsan pêşiya klînîka 'Îyade' ku Dr. S. piraniya neştergeriyên guhertina gurçikan li wê derê dike. Min li wê derê delalek bi navê Telal nas kir û got: "Li gel min tişta herî hêsan ew e ku kesekê bibînim û gurçika xwe bifiroşe nexweşekê ye."

Telal, behsa çavkaniya destkeftina gurçikan dike: "Çi kesê daxwaza gurçikan bike, di nava 1-2 rojan de diçim Bexda ciwanekê dibînim. Paşê tînim vê derê ji bo gurçika xwe bifiroşe."

Telal pir bi hêsanî dikare gurçika kesekê zindî bike; "Lê bi şertê ku Dr. S. neştergeriyê ji nexweş re bike. Ji ber navbera me de hemanhengiyek baş heye. Ez nexweş û kesê gurçikê difiroşe dibim gel wî, di demek kurt de test dike û karên me diqedîne."

### Dr. S. ez rêkirim gel delalan

Min telefonek da Dr. S. û behsa rewşa xwe kir. Ji bo serdanê demek diyar kir û dema ez çûm klînîkê, sekreter ez li gel çend nexweşan birim hundir û Dr. S. got, "Emê niha kesekê ji te re bibînin û wê gurçika xwe bifiroşe." Piştre hêjmara telefona delalekê da min û got, here li ber dergeh li bendê raweste. Dema ez çûm derve min temaşe kir, heman delalê min li çayxaneyê mamele li gel kiriye. Ango 'E.' ye. Li ber dergehê klînîkê rawesta bû, du ciwan li gel bûn. Wekî Ereban bûn. Bêyî xwe nîşanê 'E.' bidim, min telefon dayê û jê re got, ez li bazara Hewlêr li benda te me. Wî jî got: "Niha du kes li gel min hene, ez ê biçim gel bijîjk û piştre ez ê telefon bidim te." Piştî du saetan 'E.' telefon da min û got: "Ez ji bo mameleyê amade me." Lê got, ez ê piştre peywendî li gel te bikim.

### Cezayê wî bazirganî salek girtin û cezayê darayiye

Li ser asta cîhanê bazirganîkirina bi parçeyên laş wek sûcek mezin tê danîn, lê heta niha li parlementoya Herêma Kurdistanê yasayek derbarê bazirganîkirina bi endamên laşê mirov ve nehatiye derxistin. Dadwerê Dadgeha Barê Kesî yê li Dihokê Mistefa Muxtar derbarê kirîn û firotina gurçikê de dibêje: "Li gor yasayê ew kar qedexe ye û bi ti awayî nabe bazirganî. Eger li ser kesek kiryar, firoşyar û delal bi çespe, wê hemû bên cezakirin. Cezayê wan jî salek girtin û cezayê darayiye."

Dadwer Mistefa Muxtar bal kişand ser wê yekê ku ew yasa rê dide guherîna endamên laşê mirov, "Lê bi şertê dana parçeyên laş bê beramber be û bandorê li ser tendurûstiya kesê difiroşe neke. Yan jî kesek mejiyê wî mirî be û dilê wî kar bike. Ew jî bi pejirandina kesûkarên wî çêdibe." Lê polîs dibêjin, ew pêşiyê li vê bazirganiyê na girin. Rêveberê Polîsên Hewlêr Ebdulxaliq Tel'et di vê derbarê de got: "Em wekî polis nakevin nava wî karî. Ji ber ku ev karek mirovahî ye."

Cîhgirê Serokê HAS PARTI'yê, Mehmet Bekaroglu, hişyar da:

# Dibe şer li bajarên Tirkiyê belav bibe

Cîhgrê Serokê Giştî yê Partiya Dengê Gel (HAS PARTÎ) Mehmet Bekaroglu bal kişand ku dibe şerê di navbera Kurd û Tirkan de li bajaran dest pê bike û ji bo pêşîlêgirtina vî şerî bang li Neteweyên Yekbûyî û saziyên navneteweyî kir.

Cîhgrê Serokê Giştî yê HAS PARTI'yê Mehmet Bekaroglu derbarê pirsgirêka Kurd, rêyên çareseriyê, îhtîmala şerekî navxweyî ji rojnameya me Rûdawê re nirxand. Bekaroglu ku li Stenbolê namzetê yekemîn ê herêma yekemîn ê HAS PARTI'yê yê, pirsên me bersivandin.

**Hûn dikarin çavdêriyên xwe yên li Amedê bi me re parve bikin?**

Ez payîzê ji bo civîneke saziyên sivîl hatibûm Amedê. Ewçax herêm cara ewil bû ku evqas ji çareseriyê re amade bû. Atmosfereke xweşbîn hebû. Lê niha reşbînî heye. Divê her hilbijartin bendewariyeke çareseriyê be. Lê niha bi mirovan re bendewariyeke çareseriyê tune ye. Rik û inyat heye. Hilbijêrên muhafazakar ji AKP'ê xeyidî ne. AKP kesên ku xelk li bendê bû, weke namzet nîşan nedan.



Wêne: DIHA

Mîna vê avahiya AKP'ê a ku li Geverê hat şewitandin, li gelek bajarên din jî avahiyên AKP'ê û BDP bûn hedef

**Li bajarên Kurdan niha dadgehkirina KCK'yiyan di rojevê de ye. Girtî dixwazin parastina xwe bi kurdî bikin. Hûn jî parastina bi kurdî diparêzin?**

Du tişt nakevin serê min. Yanî weke niyeteke baş nabînim. Yek biryara Saziya Bilind a Hilbijartinê (YSK), ya din jî biryara doza KCK'ê ye. Helwesta dadger û dozgerên doza KCK'ê qet naçe xweşiya min. Di televîzyona dewletê de 24 saet weşana bi kurdî heye. Lê dadger û dozgerên Tirkiyê bi israr zimanê kurdî weke "zimanê nayê fêmkirin" bi nav dikin. Ev provokasyoneke mezin e. Dibe ku li gorî qanûnan be lê li dijî aqil û mantiqê ye. Ger li gorî qanûnên navxweyî pirsgirêk hebe jî, xala 90'emîn a Makeqanûnê meyla xwe dide ser Peymana Mafên Mirovan a Ewrûpayê (PMME). Dikarin bi hêsanî parastina xwe bi kurdî bikin. Jixwe tiştekî sembolîk e.

> **Perçebûn ji bo parastina statûkoya heyî, bûye hincetek. Ji ber vê yekê heta pirsgirêka Kurd neyê çareserkirin, ti tişt çareser nabe.**

**Li gorî we biryara YSK'ê provokasyon bû?**

Sîstema otomasyonê heye. Pêlî pişkokê dikî, her tişt tê pêşiya te. Bila nimreya nasnameyê hebe, bes e. Digel ku ev agahî hene jî navên herî sereke yên namzetên serbixwe hate vetokirin. Piştre Tirkiye rabû ser piya û du roj piştre jî gotin "biborînin". Ev jî provokasyonek e. Kesek mir. Dibe ku hûn pirsa "Ma dadgerên dewletê provokator in?" bikin. Ez wisa nabêjim. Lê wisa ye. Ev sabotekirina pêvajoyê ye. Tiştên ku derbarê vê herêmê de tên kirin, xetere ne. Lê serokwezîr van tiştan dike.

**Hûn çi weke xetere dibînin?**

Ev herêm ber bi veqetandinê ve naçe. Ber bi kaosê ve diçe. Cara ewil e îhtîmala ku sazî û dezgehên navneteweyî bikevin navberê, derdikeve holê. Vegera ji vê yekê tune ye. Em li bûyerên li Lîbya, Misir û Sûriyê diqewimin, binêrin. Ev pêşveçûneke pir bi xeter e. Dibe ku ev şer li bajaran belav bibe. Dibe ku gelek kes bimirin. Di serî de Neteweyên Yekbûyî (NY) û saziyên navneteweyî dikarin vê rewşê bixin rojeva xwe. Ne Tayyip Erdogan, ne Abdullah Gul û ne jî keseke din nikare pêşî li vê yekê bigre. Ez bawer im Çankaya aqil û sewda ji serê Serokwezîr û hevjîna wî bir.

**Ocalan heta 15'ê Hezîranê dem daye. Ji 15'ê Hezîranê re demeke kin ma. Ger niha daxuyaniyek bê dayîn, wê ev kaos raweste?**

Bawer nakim daxuyaniyeke ku vê atmosferê sivik bike, bê kirin. Ji Kurdan re çi dibêje ne diyar e. Baş, xirab ew jî civiyan. Wan jî tiştekî derxist holê. Dibe hûn rexne jî bikin. Ev tişteke cuda ye. Herî dawî daxwazên ku ji 4 xalan pêk tê, eşkera kirin. Rewşa Ocalan, zimanê zikmakî, bend, filan û bêvan. Bi awayeke sembolîk ev yek bi 4 xalan îfade kirin. Lê vê dibêjin: "Em êdî naxwazin bi axaftinê, bi lihevhatinê hin tiştan bikin." Siyaseta Kurd ev demek e vê nêrînê tîne zimên. Di kîtekîtên daxuyaniyên Ocalan de jî ev hene. Divê Tirkiye bêje "Ez amade me pirsgirêka nasnameyê çareser bikim." Bawer nakim birêz Serokwezîr daxuyaniyek bide. Niha tenê daxwaza wî ew e bibe serokkomar. Ger vê yekê neke, pêşniyareke min heye.

> **Tirkek xwedî îmkaneke çawa be, divê Kurdek jî xwedî heman îmkanên perwerda kurdî be. Dibêjin, kî dixwaze bila kursa ziman veke. Tiştekî wiha nabe. Dewlet divê ji bo perwerda bi kurdî û perwerda hemû zimanên din jî hemû îmkanên xwe pêşkeş bike.**



Wêne: Rûdaw

Mehmet Bekaroglu

**Çi ye ev pêşniyar?**

Piştî hilbijartinê bi bangewaziya me, em platformek ava bikin. Partiyên di meclisê de, hikûmet vê yekê nakin. Lê em weke civak dikarin vê yekê bikin. Weke ku em di parlamentoyê de ne, em bangek li Kurdan bikin. Tirkiye wê piştî hilbijartina serokkomariyê bikeve hilbijartineke din jî. Bila naveroka wê hilbijartinê aştî be. Em bi Kurdan re rûnin, biaxivin. Ya rast axaftina bi Kurdan tenê re têr nake. Çimkî Kurd nêzî aştiyê ne. Ji ber vê yekê divê em bi Tirkan re rûnin û biaxivin. Bi van amadekariyan em bikevin hilbijartineke din. Qet nebe em hêviyek bidin mirovan. HAS PARTÎ wê ji vê yekê re pêşengiyê bike.

**Gelo mirov dikare raya giştî ya Tirkan qanih bike?**

Heta hûn raya giştî ya Tirk qanih nekin, hûn nikarin tiştekî bikin. Ez psîkîyatrîst im. Ez dersa Psîkolojiya Polîtîk didim. Bi qasî 6-7 hezar malbatên şehîdan tên provokekirin. Halbûkî bi milyonan însanên ku zarokên wan wê biçin leşkeriyê hene. Mirov dikare li ser hestên van mirovan nêzî mijarê bibe. Ji bo ku hûn vê yekê ji raya giştî ya Tirkiyê re bêjin, cihê linêrîna we ya meseleyê girîng e. Siyasetmedarên Tirk di bin zextan de ne. Dibêjin, em ê 6-7 hezar malbatên şehîdan çawa qanih bikin? Pirsgirêka Kurd encax bi wekheviyê çareser bibe.

**Hûn wekheviyê çawa rave dikin? Tirk xwedî çi mafî ne, divê Kurd jî xwedî heman mafan bin? Mînak perwerda kurdî wê çawa be?**

Em cîhanê ji nû ve keşif nakin. Wekhevî, di mafan de wekhevî ye. Di parvekirina nîmetan de wekhevî ye. Kesekî ku tirkî diaxive dikare çi bike, divê kesekî ku kurdî diaxive jî heman tiştan bikaribe bike. Lê ger em ê ji hev veneqetin, em ê bi hev re bijîn, wê çaxê divê zimanekî me yê hevpar jî hebe. Zimanê hevpar tirkî ye, jixwe kes vê nîqaş nake. Lê Tirkek xwedî îmkaneke çawa be, divê Kurdek jî xwedî heman îmkanên perwerda kurdî be. Dibêjin, kî dixwaze bila kursa ziman veke. Tiştekî wiha nabe. Dewlet divê ji bo perwerda bi kurdî û perwerda hemû zimanên din jî hemû îmkanên xwe pêşkeş bike. Lê min tiştekî got. Heta mirov zimanê hevpar nîşanî hemû welatiyan nede, welatiyeke wekhev pêk nayê.

**Hûn ji bo 'Xweseriya Demokratîk' çi difikirin?**

Pêşniyareke me jî heye. Em rêveberiyeke Navendiya Ademî pêşniyar dikin. Divê em meclisên giştî yên bajar û meclisên şaredariyê ji holê rakin û em meclisek tenê ya bajêr vekin. Em dixwazin li hemû bajaran derbarê mijarên hevpar –dadgeh, ewlehî, çandinî, perwerdehî, tenduristî - ên ku hikûmeta navendî biryar dide, êdî ji aliyê meclisa bajêr ve bên dayîn, ji aliyê rêveberên herêmî ve bên dayîn. Ne xweserî û federasyon, ev meclis wê budçeyê çêbikin. Hewce bike, wê biçe referandûmê. Ji bo ku standardên aborî û civakî deyne, wê rêveberiyeke navendî jî hebe. Ev ê bi xwe re berhemdarî û dînamîzmê bîne.

Ma wê ji vê pêşniyarê re jî nebêjin 'welat perçe dibe'? Ger bi vê perçe bibe, wê bibe 81 perçe. Perçebûn ji bo parastina statûkoya heyî, bûye hincetek. Ji ber vê yekê heta pirsgirêka Kurd neyê çareserkirin, ti tişt çareser nabe. Her fikrên ku tundî, nijadperestî û cudaxwaziyê nakin, divê bên îfadekirin. Dema we astengiyên li pêşiya ramanê rakir, wê çaxê em hemû dibin wekhev.

**Li Tirkiyê hûn bi nasnameya xwe ya rewşenbîrî û nêzikahiya xwe ya li hemberî pirsgirêka Kurd tên nasîn. HAS PARTÎ jî di van mijaran de weke we difikire?**

Helbet ev ramanên fermî yên HAS PARTÎ'yê ne. Lê HAS PARTÎ ne partiyeke homojen e.

*Hevpeyvîn: Bawer Çem*




Otêla Erbîl Rotana di Çileya îsal de hat vekirin û 55 milyon Dolar lê hatin xerckirin

# Li Kurdistanê zoriyên vekirina otêlek pênc stêrî

## Rêveberê Giştî yê otêla Rotana li Hewlêr Thomas Touma: Heftane em 400 kîlo fêkî û mêwe ji Libnanê tînin

**Hewlêr (Rûdaw) -** Otela Erbîl Rotana ya ku 55 milyon Dolar lê hatin xerckirin, di meha Çile de li Hewlêrê hatiye vekirin. Ew otêl heftane 400 kg fêkî û mêwe ji Libnanê tîne Hewlêrê. Her sê mehan carekê, ji ber nebûna xwarin û vexwarinên kalîtebilind li Îraqê, nêzî 3 ton xwarin û vexwarinê ji derve tîne.

Di vê derbarê de Rêveberê Giştî yê Otêla Rotana ya li Hewlêr, Thomas Touma, dibêje: "Pir zor pêdiviyên me ji bo çêkirina xwarinan li vê derê dikeve destê me." Toma wiha pêdeçû: "Ji pêdiviyên teknîkî bigre, heta pêdiviyên çêkirina xwarin û çapkirin û her tiştek pêwîst e li derve bê çêkirin. Divê hemû tişt ji derveyî welat bên, ev jî pirsgirêka veguhestinê bi xwe re tîne û gelek pirsgirêkên din jî li pey xwe tîne. Herwiha aloziya darayî jî derdixe."

Ji bo bicihkirina pêdiviyên restorantên wê otelê (5 restorant hene) sedî 90'ê tişt û pêdiviyên otêla Rotana ji Libnanê tên, yên din jî ji Îmarat û Ewrûpa tên, ev jî di demekê de ku ew otêl ji bo parastina nav, markeya xwe û herwiha ji bo bilindkirina standartên xizmetkirina otelek 5 stêrî, mesrefa wê otelê zêde bûye. Lê di heman demê de stafên otelê hewl dane ku di warekî din de tanzîmata wê mesrefa zêde bidin, ew jî bi sedema erzaniya kirêya xaniyan a li Hewlêrê. Desteya Rêveber a wê otelê hewl daye ku wê derfetê bikar bîne û li Hewlêrê ji karmendên xwe re xanî girtiye.

**350 karmendên otela Rotana Erbîl xelkên derveyî Îraqê ne. Bi taybetî jî ji Hindistan û Tirkiyê ne.**

Rêveberê Giştî yê Otela Rotana Thomas Touma diyar kir ku mana şevek normal li vê otelê 230 Dolar e û piraniya mêvanên wan jî bazirgan in. Ji ber ku hê jî li Hewlêr tûrîzm ewqas pêşneketiye. Touma wiha pêdeçû: "Yek ji pirsgirêkên din ku em rastî wan tên, derbarê çavkaniyên mirovî de ye. Mixabin em nikarin zêde pişta xwe bi karmendên navxweyî girê bidin. Ji ber vê yekê nabe em li benda gihiştina wan rawestin û divê di vî warî de ezmûna karmendan hebe." Herwiha Touma dibêje ku dîtina karmendên xwemalî ku fêrî biryarên otelê bibin û bipejirînin, karekî pir zehmet e.

Niha otela Rotana Erbîl xwedî 350 karmend e û nîvê wan xelkên derveyî Îraqê ne. Bi taybetî jî ji Hindistan û Tirkiyê ne. Touma diyar kir ku despêkê armanca wan ew bû ku ji sedî 80'ê karmendên wan Îraqî bin.

---

## Parêzgarê Hewlêrê: Eger sîstem biserket wezaret dikare li hemû xwendingehan bikar bîne

# Li Hewlêrê germkirina bi enerjiya rojê tê testkirin

**Barzan Mihemed**

Li xwendingeheke bajarê Hewlêrê sîstema germkirina odeyan bi riya enerjiya rojê tê testkirin. Rêveberê Giştî yê Bînasaziyê li Wezareta Perwerdeyê Serwet Mistefa dibêje: "Eger sîstem li wê xwendingehê biserkeve, em ê hewl bidin li tevahiya xwendingehên Herêma Kurdistanê deynin."

Bikaranîna enerjiya tavê ji bilî ku beşekî zêde yê bikaranîna elektrîkê li dibistanan kêm dike, jî bo xwendekaran jîngeheke paqij dabîn dike û wan ji bikaranîna sobeyên petrolê rizgar dike.

Bi baweriya şêwirmendê Wezareta Elektrîkê û pisporê warê enerjiya nûbûyî Mihemed Emîn Hewramî, her çiqasî xerciyên projeyê zêde ne jî, lê fêdeya wê jî zêde ye: "Ji ber hinek xwendingeh ji bo germkirinê splîtan bikar tînin."

Niha ev sîstem li dibistaneke nû avakirî ya Hewlêrê tê meşandin. Xerciya sîstema germkirinê, ku bi enerjiya tavê kar dike 64 milyon dînar e (40 hezar E).

Rêveberê Ragihandina Waliyê Hewlêrê Hemze Hamid derbarê danîna vê sîstemê got: "Dema behsa sûdwergirtinê ji enerjiya rojê hat kirin, me biryar da li wê xwendingehê test bikin, eger biserket, ji bo elektrîka niştimanî wê sûdeke zêde dibe. Wezareta Perwerdeyê jî dikare ji niha pêde di avakirina avahiya dibistanan de peyrew bike."

Rêveberê Bînasaziyê li Rêveberiya Giştî ya Perwerdeya Hewlêrê Wirya Umer, ku serperiştiya vê projeyê dike pir pesinê vê sîstemê dide û dibêje: "Sîstemeke pir baş e, gava xwendekar tê xwendingehê odeya wî hatiye germkirin, ji bihna sobe û gaza splîtên elektrîkê dûr dikeve."

Li ser banê xwendingehê, pêncî textên enerjiya rojê hatine danîn, ku her du text ji bo odeyekê tên bikaranîn. Xwediyê Solar Energy Welîd Şerîf, ku ev sîstem bo xwendingehê çêkiriye, dibêje: "Ev xwendingeh weke mînak testkirin li ser tê kirin. Ev text carekê tên danîn û enerjiyeke paqij berhem tînin ku germiya wê weke germiya otomobîlê tê odeyê û tê de ti corên gazê tune. Text divê mehane du caran bên paqijkirin da ku enerjiyeke zêdetir werbigirin, ji ber eger toz û xwelî li ser venişe ji sedî 50 enerjiya xwe ji dest didin."

Pisporên warê enerjiyê ji tavê dibêjin ku keş û hewaya Kurdistanê ji bo çêkirina enerjiya elektrîkê ji rojê pir baş e, bi mercekî ku ev textên ku tên bikaranîn qalîteya wan baş be.

Textên ku Welîd Şerîf li wê dibistanê danîne di hundirê du xulekan de germiyê werdigirin û didin. Derbarê bidestketina enerjiya germiyê ji textan di zivistanan de ku pir caran roj ne li derve ye, Welîd dibêje: "Eger ewir tenik bin text enerjiyê dimijin, herwiha amûrê texzînkirina enerjiyê li cem me heye, ku dikare ji bo dema 24 saetan enerjiyê texzîn bike."




# Tîmeke Kurdan çû, 2 tîmên Kurdan tên

▶Diyarbakirspor ji Lîga Yekemîn a Bank Asyayê daket lîga 2'mîn.

▶Du lîgên din ên Amedê jî ji lîga 3'mîn tevlî lîga 2'mîn dibin.

**Bawer Çem** Amed

Piştî ku Diyarbakirspor ji lîga superê ya Tirkiyeyê ket, Yenî Diyarbakirspor û Diyarbakir Buyukşehir Belediyespor, di lîgê de performanseke baş nîşan dan. Herdu tîm jî di grubên xwe de li pêş in û ji sedî 90 ji Play Off'ê re dimînin. Ger di Play Off'ê de jî bi ser bikevin, wê di Lîga Duyemîn de bilîzin.

Li bajarê Amedê yê Bakurê Kurdistanê piştî têkçûna Diyarbakirsporê ku ji Lîga Yekemîn a Bank Asyayê ket, hêviyên futbolhezan şikestibûn. Lê du tîmên ji Amedê yên din performanseke mezin di lîgên xwe de nîşan dan û careke din hêviyeke baş dan Kurdan. Tîmên Diyarbakir Buyukşehir Belediyespor û Yenî Diyarbakirspor di lîgê de têkoşîneke bêhempa dan û hindik ma ji Play Offê re bimînin. Ger Yenî Diyarbakirspor di maçên dawî de bi ser nekeve wê çaxê wê Baglarspor bikeve pêş. Ev jî dide nîşan ku kîjan tîm têk biçe jî wê ji Amedê 2 tîm bi ser bikevin û navê xwe di Play Offê de binivîsin.


Wêne: Rûdaw

Kadroya Buyukşehir Belediyespor li gel Osman Baydemir



### Bajon Diyar, bajon!

Tîma kesk û sor Diyarbakir Buyukşehîr Belediyespor ku di Grûba 3'emîn a Lîga 3'emîn a Spor Totoyê de têdikoşe, ligel maça dawî 56 puan bi dest xistin. Buyukşehîr Belediyespor ji van tam 28 puanan ji deplasmanê stand. Li gorî statîstîkan her çiqas derketina vê tîmê ji bo Play Offê mîsoger nebe jî ji sedî 90 wê bi ser bikeve û navê xwe di Play Off'ê de binivîse. Berpirsyarê tîmê Ekrem Yeşîl, ji rojnamevanan re diyar kir ku muheqeq ew ê reqîbên xwe têk bibin û di serkeftineke baş bi dest bixin. Ji bo ku tîm Play Off'ê mîsoger bike, Buyukşehîr Belediyespor di maça hefteya borî de Torbalisporê têk 4-0 têk bir û Play Off'ê garantî kir; eger tîma navborî di Play-Offê de jî bi ser bikeve, wê bi awayeke otomatîk derbasî Lîga Duyemîn bibe.

### Diyarek çû, 2 Diyar tên

Di şûna tîma keskesor Diyarbakirspor di lîga Bank Asyayê de têk çû de, du tîmên nû yên bi navê Diyarbakirspor radibin. Piştî Diyarbakir Buyukşehir Belediyesporê, Yenî Diyarbakirspor jî serkeftinên baş bi dest xist û bi vê performansa xwe ber bi Play Off'ê ve dimeşe. Tîma ku di Lîga Yekemîn a Amatorê de dilîze û niha di gruba xwe de pêşeng e ji sedî 90 ji Play Off'ê re dimîne. Ger tîm di Play Off'ê de jî bi ser bikeve, îcar wê di lîga 3'emîn de têbikoşe. Di navbera Yenî Diyarbakirspor û Tîma Baglarê de tenê puanek ferq heye. Di vê maçê de kî bi ser bikeve, wê ew qezenç bike. Di encamê de herdu tîm jî yên Amedê ne û kîjan qezenç bike jî wê weke tîmeke Kurd têbikoşin.

### Play Off çi ye?

Di 5 koman de bi tevahî 10 tîmên ku lîgê di rêza 2'emîn de biqedînin, wê mafê lîstina Play Off'ê bi dest bixin. Tîmên ku nikaribin di rêza 2'emîn de cih bigrin, wê di grûbên klasmanê de têkoşîna xwe bidomînin. Lê ji 10 tîmên ku di Grûba Bilind a Play Off'ê de cih digrin, tîmên ku bibin yekemîn û duyemîn wê rasterast derbasî Lîga Duyemîn bibin. Sê tîmên ku di Gruba Bilind de bikevin rêza 3'emîn, 4'emîn û 5'emîn wê bi 5 tîmên ku di grûba klasmanê de bûne yekemîn re musabeqe bikin. Di encama van musabeqeyan de tîma ku bibe yekemîn, wê derbasî Lîga Duyemîn bibe. Tîmên ku di grûbên klasman de bibin yekemîn û duyemîn jî wê derbasî lîga 3'emîn bibin.

# Stêrkên Kurd wê ji bo Tirkan bilîzin!

6 zarokên basketvan ên Kurd ji ber ku lîga Kurdan tune wê wek Tirkekî di nava tîma Millî ya Tirk de bileyîzin. Her 6 zarok jî ji tîmên basketbolê yên Şaredariya Baglarê ya Amedê ne.


Wêne: Rûdaw

**Amed (Rûdaw) –** Ji tîmên Basketbolê yên Şaredariya Baglara Amedê 6 zarokên basketvan, wê di Tîma Millî ya Tirkiyeyê de bilîzin. Basketvanên Kurd, li Meletiyê ketin kampa tîma millî û dest bi antrenmanan kirin.

Lîstikvanên Kurd ên Tîma Basketbolê ya Şaredariya Baglara Amedê Muhacir Duman, Sabrî Gelmez, Zîlan Gulsum, Halîme Vural, Ebru Ugurkan û Mesuda Demiroglu, wê ji vir û şûnde li ser navê tîma millî ya Tirkiyeyê bilîzin. Ev lîstikvanên serkeftî ku Kurd in, ji ber ti statûyeke Kurdan tune ye, neçar in ku di tîma millî ya Tirkan de bilîzin. Lîstikvanên Kurd ji bo ji Amedê çûn Meletiyê û di kampa tîma millî de dest bi antrenmanan kirin. Li gorî agahiyên ku Rûdawê bi dest xist, ev lîstikvan wê hem di tîma milî de bilîzin û hem jî wê di Kluba Sporê ya Şaredariya Baglarê de bilîzin.


Zîlan Gulsum

Wêne: Rûdaw

### Keçên Kurd serkêşî dikin

Hêjayî gotinê ye ku ji 6 lîstikvanên Kurd ên serkeftî ku wê di tîma millî de bilîzin 4 kes keç in û di Tîma Basketbolê ya Baglarê de dilîzin. Tîma Basketbolê ya Jinan a Şaredariya Baglarê di rojên borî de di Şampiyoniya Anatolyayê de bi ser ketibû û bibû 3'emîn. Tîm bi madalyaya bronz hatibû xelatkirin.

### 'Zîlan yekemîn e'

Lîstikvana 13 salî Zîlan Gulsum ku wê ji vir û şûnde di tîma millî ya Tirkiyeyê de bilîze, di nava keçikên heman temenî de weke keça herî serkeftî tê dîtin. Zîlana biçûk ku Tîma Jinan a Basketbolê ya Şaredariya Baglarê de dilîze, li Baglara Amedê dijî.



*Pêwîst e desthilat ji pirsa Kurd fam bike**

## Eger li ser pirsa Kurd li hev nekin, dibe ku em dîmenê weke Sûriyê li Tirkiyê bibînin

**Cengîz Çandar**

Eger AKP, BDP û CHP derbarê pirsa yekem a vî welatî li hev nekin, em ê dîmenên Sûriyê û Yemenê li Tirkiyê jî bibînin. Piştî mehekê, weke îro, em ê parlamenterên nû yên Tirkiyê nas bikin. Di heman demê de tablo û hevsengiya hêzên siyasî yên Tirkiyê ji me re eşkere dibe. Dizanin kî ne ew kadroyên siyasî yên ku destûra bê ya Tirkiyê amade dikin, lewma jî ev hilbijartineke girîng û watedar e.

Piştî mehekê em ê qonaxa hilbijartinê li pey xwe bihêlin. Lê ji hilbijartina sala 1950'î, ku çendîn partî tê de beşdar bûn û heta weke îro li bîra min e, hilbijartina vê carê sartir e!

Ti hilbijartinek weke yên niha encamên wê ne diyar bûn. AKP wê derdora ji sedî 45'ê dengan bidestve bîne, CHP ji sedî 25, MHP di derdora rêjeya gihiştinê ya parlamentoyê, yanî 10 dibe û herî zêde digihe ji sedî 11 yan 12. Ev hejmar jî bi awayekî giştî di encama rapirsiyê ya çendîn dezgeh û şirketên cuda cuda de hatine bidestxistin.

Di heman demê de, pêşbîniya mezin ew e ku BDP bi namzetên xwe yên serbixwe dikare 30-35 kursiyên parlamenê bidestve bîne. Gava hilbijartinek bi têza mezin encama wê bi vî rengî be, divê em şaş nemînin eger ev hilbijartin germiyek mezin li ba me peyda neke. Gelo ev sarî, germ û guriya gavavêtina AKP'ê bidawî tîne, gelo bi rastî bûna vê partiyê weke "muhafezekar" rola wê di vê meseleyê de heye, divê ev pirsiyar bê kirin û lê bê fikirîn. AKP di hilbijartinên sala 2002'yê de bû 'wild card' û ANAP, MHP û DSP li jêr rêjeya ji sedî 10 ya gihiştina parlamentoyê hişt û komkujî li ser sehnaya siyasetê bicih kir û bi bidestveanîna rêjeya ji sedî 34'ê dengan hate ser desthilatê. Di hilbijartinên 2007'ê de, bi derketina krîza hilbijartina serokayetiya komarê ku bû sembola denghilbirîna cemaweran, rêjeya ji sedî 47'ê dengan bidest ve anî.

Hilbijartina 12'ê Hezîrana 2011'ê di demekê de tên kirin ku heta radeyeke zêde desthilata leşkerî lawaz bûye, lê nikare bê gotin ku bi tevahî ji hêzê ketiye ku ev jî di xizmeta demokrasiyê de ye, lewma dîtina şanoya siyasî ya Tirkiyê û nîşandana astê aramiya partiyan tiştekî baş e. Lê di heman demê de ev tablo û ew serkeftina ku AKP'ê di herdu hilbijartinên berê de bidestve anî, "hêza gavavêtinê" di vê partiyê de zêde xerc kir, dîsa bi mebesta derbaskirina 'reaksyona negatîf a dewletê' rûbirûyê metirsiya 'girtin' û muhafezekarbûna vê partiyê di hilbijartinan de dibe.

> **AKP'ê di nav du hefteyên dawî de 2 hezar BDP'yî xist zindanê**

Piştî hilbijartinên 2002'yê, AKP'ê sîfeta `demokrat-muhafezekar` bi xwe ve kir. Ev ew hevok bû ku piştî 11'ê Îlonê ji ber tehlbûna sîfeta`Îslamî` weke tiştekî qenc dît. Li vir mebest ji "muhafezekariyê" hestiyarbûn e li himber hesta olî û kevneşopiya millet. Bi ti hawî ligel hevoka "gavavêtin" ne nakok bû.

Lê vê carê "xwedaxistin" têza "muhafezekariyê" zêdetir dike. Weke dehên salane me fam kiriye ku muhafezekarî wateya partiya rastbîr dide. Bi kêmanî ev 'metirsî' heye. Bi hebûna vê metirsiyê re, destûra nû heta çiqasî 'nû' dibe. Bi rastî gava kar ji bo destûra nû destpê dike ev mesele dibe babeta gotûbêjê.

Li başûrê rojhilat pêşbirkeya hilbijartinên azad li holê heye?

Ji wê dema ku AKP hêzê ji `xwedaxistinê` dibîne beramberî `reaksyona negatîf a dewletê`, berdewambûna wê di vekirina deriyên xwe li pêşberî Tirkiyê dibe kaxezeke sembolîk, di vî alî de jî şêwazê diyalogê ligel kêşeya Kurd, ku kêşeya yekemîn a Tirkiyê ye nîşana vê helwêstê ye. Ji ber rikeberiya hilbijartinan ji wan helwestan fam dikin ku di dema destpêkirina kampanya propagandaya hilbijartinan li dijî BDP'ê girtibû ber, di heman demê de zimanê berpirsên BDP'ê jî di vî alî de berpirsiyar e, her çiqasî BDP jî di meseleya danûstandinê de derbarê pirsgirêka Kurd de di aliyê lojîkî de peyamên baş nade. AKP'ê tenê bi wê yekê nesekinî ku rêjeya ji sedî 10 li dijî BDPê weke xwe hişt û `rikeberiyeke ne rewa` meşand û di van herdu heftiyên dawî de li deverê bi kampanyeke girtinê 2 hezar kes şandin zindanê.

Van deman çavên me li ser Sûriyê ye. Li wir rêjîma Baasê ya zordest ev du meh in di encama bûyera xwînawî li gor îstatîkan nêzîka hezar kesî kuştiye û 10 hezar kes jî zindan kiriye. Çiqasî rast e ku em bêjin li başûrê rojhilatê Tirkiyê garantiya "hilbijartineke azad" heye?

Parlamenterekî AKP`ê ku weke "îdeologê" partiya xwe hatiye naskirin, doh digot: "... Ew rastiya ku em îro dibînin, BDP'ê xwe daye destê stratejî û siyasetên rêxistina terorîstî, bi reftarên xwe bingehên xwe yên demokratîk ji nav bir. Weke pêwîst bû BDP'ê li dijî êrîşên rêxistina terorîstî helwêst pêşan neda û gotara xwe ya şerxwaz domand. Bi vî rengî, hebûna xwe bê wate dike û pirsgirêka siyaseta sivîl kûrtir dike. Heta ku BDP xwe ji vê radestbûna xwe rizgar neke, ew nabe aktorekî demokratîk". Ev peyv li ser kaxezê weke ku rast bin dixuyên, di heman demê de ev gotin weke belgeyekê nîşan dide ku navenda partiya desthilatdar bi dirêjiya wê demê tiştek ji pirsa Kurd fam nekiriye. Eger piştî hilbijartinan, derbarê pirsgirêka yekemîn a vî welatî AKP, BDP û CHP, hersê jî li hev nekin, dest bi dîtina nimûneya Yemen û Sûriyê li Tirkiyê tê kirin. Bi mabûna vî rengê hizrîn û lojîkê heya piştî hilbijartinan, nikare derbarê pirsgirêka yekemîn a Tirkiyê de gav bên avêtin.

*Nivîs ji rojnameya Radikal a tirkî, hejmara roja 13.05.2011'ê hatiye wergirtin.



## Opozîsyona rewşenbîr

**Taman Şakir**

Kurd her weke ku çawa tecrûbeya wan a desthilata herêmê tune, bi heman awayî jî tecrûbeya Kurdan a karê opozîsyonê tune. Herdu jî bi dîrok û çanda siyasî ya Kurdan ve girêdayî ne.

Cudahiya di nêrîn û baweriyan de tiştekî xwezayî ye di mirovan de. Ev cudahî jî di dema krîzên siyasî û civakî de kûrtir dibin.

Di her sîstemeke siyasî de, hejmarek bingeh ku kultura siyasî pêk tînin, hene. Di rêjîmên diktatorîk de, desthilat dest datîne ser hemû aliyên jiyanê û wan zeft dike. Di sîstemên demokratîk de jî hebûna opozîsyonê bi rêya partiyên siyasî, rêxistinên civaka sivîl û raya giştî ruhekî didin proseya siyasî ya welat. Çavdêrîkirina karûbarên hikûmetê ji bo berjewendiya giştî aktîftir dibe; eger opozîsyon xwediya rewşenbîriyê be û bizanibe çawa wê role bilîze.

Opozîsyon berî her tiştî divê baweriya wê bi desthilata piraniyê hebe û rêza wê bigire, ji ber ku ji aliyê xelkê hatiye hilbijartin û nabe heta hetayê dijî biryarên hikûmetê be. Her yek ji desthilat û opozîsyon bi rêyekê de herin, wê demê dibe sedemê hilweşandina proseya siyasî li welat. Yanî ne divê herdem dij be, ne jî herdem ligel be. Divê ligel piraniya hikûmdar di orta rê de, hevdu bigirin.

Di sîstemên demokratîk de, ligel hebûna cudahiyên kûr di bîr û baweriyan de, divê aliyên siyasî di atmosfêreke vekirî û bi awakî aştiyane bi hevre bijîn û proseya siyasî birêve bibin bi rêya diyalog, danûsitandin û pevguherandina desthilatê ya bi hêminî.

> **Ji bo aktîfkirina guherînan pêdivî bi opozîyonek çalak û aştîxwaz heye**

Karê opozîsyonê ne ew e ku rewşa siyasî û desthilatê li welatek têk bibe, bi rêya şer û fîtneyan bixwaze desthilata siyasî zeft bike. Ev karekî xeternak e li ser proseya demokrasiyê li her welatekî. Dibe ku opozîsyona Kurdî, desthilata Kurdî weke dîktatorîk, êlperest û malbatî bibîne. Lê hebûna wan di qada siyasî de weke opozîsyon wateyeke wê heye ku em dikarin bibêjin li Kurdistanê sîstema plûral a partiyan heye, eger ev demokrasiya sîstemê jî ne '24 eyar' be. Opozîsyoneke rewşenbîr dikare vê sîstemê geş bike, bi çavdêrîkirina hikûmetê û karkirina bi awakî aştiyane, bi liberçavgirtina berjewendiya giştî. Xelkê Kurdistanê û partiyên wê yên opozîsyonê jî gereke bizanibin opozîsyon çi ye û karê wê çi ye, çawa dikare jiyana siyasî li welêt aktîf bike û armanca wê xizmetkirina mirov be. Lê mixabin, opozîsyona Îraqê bi giştî û Kurdî bi taybetî ji ber nebûna hilmeke dirêj, dixwaze herî zû bigihe kursiyê desthilatê.

Ji bo aktîfkirin û çêkirina guherînan di sîstema siyasî ya Kurdistanê de, pêdiviya me bi opozîsyoneke çalak û aştîxwaz heye. Ev yek jî girêdayî hebûna opozîsyoneke rewşenbîr a xwedî hişekî vekirî ye, ku baweriya wê bi hevrikiya siyasî hebe, bi mebesta pêşerojeke baştir. Lê bi baweriya min, opozîsyona Kurdî hêjî awa û tahmûla opozîsyonbûnê nedîtiye.

# Xir Xir



Dr.Gulnaz Demirtaş*

Li gor lêkolîna bijîşkan gelek mirov di xewê de xir xirê dikin. Ji ber xir xirê ew mirov di jiyana rojane de ji aliyê konsentrasyonê ve gelek zehmetiyan dikşînin. Mirové ku xir xirê dikin sibeha bêhal radibin û nikarin karê xwe yê rojane bikin, dema erebê dajon rîzikoya ku qezayan derbas bikin heye, psîkolojiya wan xirab e, ser êşî û nemêrî jî bi wan re xuya dike (impotency). Herwiha ew mirovê xir xirê dikin rîzîkoya tansiyona bilind çêdike û nexweşiya şekir jî derdixe.

**Li ser xir xirê, hûn dikarin çi bînin ziman?**

**Dr.Gulnaz Demirtaş:** Em xire xira mirovan a di xewê de wek nexweşiyekê dibînin. Ji ber ku ew kesê xir xir dikin hejmara wan ne kêm e. Piranî ev nexweşî bi mirovên temenê wan ji 60 salî û jor de xuya dike. Ev bi mêran re ji sedî 60 û bi jinan re jî sedî 40 kesî re dikare derkeve. Herwiha hejmarek ne zêde bi zarok û ciwanan re jî xir xir derdikeve. Lê em nikarin sedema ku zarok û ciwan xir xirê dikin wek kesê temen mezin muqayese bikin. Her yek sedemek cuda heye ku ev nexweşî pê re derdikeve.

**Sedema xir xira zarok û ciwanan çi ye?**

Bi zarokan re sedema xir xirê, ew xarikê bêvil û qirikê ne. Bi rêya emeliyatê ew xarik ji zarokan tên rakirin, hingê jî zarok ji wê xir xirê xilas dibin. Sedemê ku ciwan û pîr jî xir xirê dikin, mirov dikare wiha rêz bike:

1.Nebaşiya anatomiya dev: Zimanê mezin û xarikê qirikê.

2. Nebaşiya anatomiya bêvilê: Septum, goştê zêde (poliep), xarikê bêvile û alerjî.

3. Kîloyê zêde (obesitas).

4. Alkol, cigare, biçûkbûna çenê, dermanê xewê û yê depresyonê.



Sedemê xir xirê ne tenê ji hêla deng e, herwiha hinek mirov hene ku nefesa wan disekine (apneu ). Wextê ku apneu hebe divê bijîşk test bike ka di seatê de çend caran apneu dibe.

**Derman û çareseriya xir xirê çi ye?**

Li gor sedemê wê dermankirina wê jî tê kirin. Kesên xwedî kîloyê zêde divê wan kîloyên zêde bidin. Pêwîst e berî xewê alkol, cigare, dermanê xewê û yê depresyone negirin. Mirov dema derman digrin hingê jî dibe sedema sistbûna wan û xir xir dikin. Dema ku xarikê bêvil û qirikê mezin bin divê bê emeliyatkirin. Wextê ku septomê bêvil ne rast be û polîep hebin divê ew jî bên emeliyatkirin. Ji bo çena biçûk pêwistî bi dîrsek heye. Eger ku apneu hebe dibe ku ew cihazê nefesê ji bo şev pê raze. Banda taybet li bêvila xwe bidin, spreya bêvilê ku ji bo nefes pirtir bigrin bikar bînin, dîrsek bêxin dev da ku çen û ziman here pêş û karibin hîn bêhtir nefes bistînin, dema pêwîst be emelîyat bê kirin.

*Amadekirin: Zelal Çelîk*

**Dr. Gülnaz Demirtaş ji Bakurê Kurdistanê ye. Niha li Holanda dijî. Bijîşka Guh, Bêvil û Qirikê ye.*

## Jenosîda Dêrsimê 1937/1938

(Komkujiya li hemberî Kurdan li Tirkiyê)

**Axaftvan:** Haydar Işik
û Dr. Hidir Çelik

**Dem:** 24.05.2011
**Saet:** 17:00
**Cih:** Asta-Foyer/
FH Köln-Deutz
Betzdorferstr. 2
50679 Köln




## Dokûmentasyon li ser Ahmet Kaya li Awistirya

**Derhêner:** Hayri Argav

**Dem:** 21.05.2011
**Saet:** 17:00

**Cîh:**
Kulturbühne Ambach
Am bach 10
6840 Götzis/ Awistiriya



## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Di dîrokê de qehremanekî Kurd – Fikir, dîtin, hizir. 2- Maddeya ku pê bombeya atomê çêdibe – Derewîn, derewkir – Zewac, zewicîn. 3- Rêz, astengî, navbera enîşk û mil – Libergerîn, tika kirin, hawar. 4- Fêkîyek – Xebat, keft û left, berxwedan (berepaş) – Di Tib ê de lezgînî, acîl (berepaş). 5- Bajarekî bakurê Kurdistanê – Na, no, nexêr. 6- Ava ku ji binê teht û zinaran derdikeve. 7- Kêfçî, kesê ji kêfê hez dike – Damar, kok. 8- Nîjad, reng – Generalê deryayê. 9- Pûş û geyayê ku di nava avê de digihê hev (berepaş) – Navekî zilaman, sabir. 10- Welatekî rojhilatê Ewrûpayê – Komputer.

**Serejêr:** 1-Rojnameyek Kurdî – Navekî keç û jinan. 2- Deng, awaz – Geyayek (gîhayek) ku li dora xanîyan pir şîn tê. 3- Pê dest û laş tê şûştin, dermanekî şûştinê – Berhem, afirmendî. 4- Dolar û Euroyên hûr (berepaş) – Ap, mam – Bide, kanî, pûşê hûrkirî. 5- Bi Erebî çav – Navekî keç û jinan. 6- Mişterî, mişterîyên bankayê – Mal, terş û talan. 7- Xwarina heywanan – Xwelîdank, tasa xwelîyê (berepaş). 8- Bi Ingilîzî rasteqînî, rastî (berepaş) – Kok, reh, damar. 9- Bergerîn, serî tewandin (berepaş) – Nexweşîyek bedenê, hişkbûna damaran. 10- Wêran, xirabûyî (berepaş) – Vexwarinek bi asît (berepaş). 11- Hejmarek, paşayê Rûsan (berepaş). 12- Heywanek (berepaş). 13- Ricakirin, bergerîn, lava (berepaş). 14- Ser û çav, rûçik. 15- Mîde, lebatek hinevê mirov, ciyê xwarinê. 16- Navekî keç û jinan.



**Bersivên hejmara 95**



## Peyamên we belaş tên belavkirin

**Hûn dikarin peyamên sersaxiyê, pîrozbahiyan, agahiyên derbarê hemû cûreyên çalakiyan bi rêya e-mail a me (info@rudaw.eu) ji me re bişînin. Bi şertê ku nivîsên we ji 100 peyvan ne dirêjtir bin, em ê wan li vir belaş biweşînin.**

Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Dilê me çawa kar dike?



Dil organekî laşê me ye, bi qasî kulma mirov mezin e û li kêleka çepê ya singa mirov de ye. Hêj mirov di zikê dayika xwe de ye, dil dest bi lêdanê dike û heta mirinê weke motorê kar dike, nasekine. Dil berdewam xwînê pak û tijî oksîjen dike û pompeyî nav xanên laşê mirov dike.
Ger ku mirov destê xwe li ser aliyê çepê yê singa xwe deynê, mirov tirpe tirpe dil hîs dike. Dema ev lêdana dil sekinî, jiyana mirovan jî disekine. Ji ber vê yekê dil organekî ewqas girîng e ku bêyî dil berdewama jiyanê ne gengaz e.
Lê tevî vê girîngiya jiyanî a dil, em pir caran li hember dilê xwe ne baldar in, em dilê xwe naparêzin. Kişandina cigarê, vexwarina alkolê, zêde qelewbûn, kêmlebat, hewaya gemar; ev hemû ji bo tendurustiya dil ziyana wan gelek e, divê mirov xwe ji van biparêze.




Amedekirina rûpela zarokan:
Sevda Şafîk

## Welatê me

# Kerkûk






Kerkûk 2'emîn bajarê mezin ê Başûrê Kurdistanê ye. Bajarekî kevin û dîrokî ye. Li derdorên Kerkûkê bîrên petrolê ên dewlemend hene. Piştî damezirandina Hikûmeta Federal a Başûrê Kurdistanê, perwerde li dibistanên bajêr bi zimanê kurdî ye. Weke bajarê Hewlêrê, Kerkûk jî xwedî kelayek dîrokî û navdar e. Li Kerkûkê piranî Kurd dijîn, lê Turkmen û hinek Ereb û Asûrî jî hene. Rejîma Saddam Hûseyîn ji bo ku Kerkûkê ji Kurdan vala bike, gelek Kurd ji bajêr derxistin û gelek Ereb bi zorê anîn vî bajarî, vê yekê jî gelek pirsgirêk çêkirin.

# Robîn Bena



Temenê Robîn bû salek û nîv. Du navên wî hene: Robîn bi kurmancî û Bena bi zazakî. Wateya Bena bi zazakî "bûyin" e. Dema dê an jî bavê Robîn stranên kurdî dibêjin, Robîn dans dike, kêfa wî ji stranên kurdî re tê. Bavê Robîn ji Çewlîgê û diya wî ji Semsûrê ye. Çewlîg û Semsûr li Bakurê Kurdistanê ne. Robîn bi xwe jî li Almanyayê hatiye dinê. Ev bû şeş meh ku Robîn diçe baxçeyê zarokan.

Fêrî Kurdî Bibe



Mm — م
Masî — ماسی